# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

ROJNAME YA HEFTEYÎ YA NÛÇEYÎ • BIHA 2.5 TL

HEJMAR 5 • 24-30 GULAN 2014 • WWW.BASNEWS.COM


**Gani Nar**
Dengekî sirgûnkirî
➜ 16

# Li sînoran mirin dibare



**Di 10 salên dawîn de tenê li ser sînorê Îranê 120 kurd hatin kuştin. Li ser sînorê Rojava û Tirkiye jî du sal in ku kurd têne kuştin. Herî dawî Saada Derwich ku diya du zarokan bû ji alî leşkerên tirk ve hate kuştin.**



## Bajarê birîndar: Helebçe



Niştecihên Helepçê hemû kurd in. Kurdên bajêr pirranî muslumanê sunî ne. Li heremê kurdên Ehlî Heq jî hene. Demê kevn de ku bajêr nû hatibû avakirin li Helepçê taxekî cihûyan jî hebû. Piştre wan bar kirine û çûne Îsraîlê. ➜ 2-3

## Destana egîdê ezdiyan



Destanên ku li Kurdistanê di nava gel de dilorin carina tehma çaxa Yewnan a Antîk digêhîna bilêvên mirov û carina jî tû dibînî ku bi mijarên teorîk ên îronî xwedî dersdayinê xwe dirêjî ber çavên mirov dike. ➜ 4-5

## Zarokek stranek, Helinek



Helin Başak Kanat di destpêka temenê xwe de belkî hêvîdar a jiyan û cîhanek şûştî bu ji şer û alozî û kuştinan. Belkî ji bo wê jiyan dikek bû ku mirov hema li ser bilîze. ➜ 14-15

## Nobelê bidin Öcalan

Jabar Amin: Ez wek parlementerekî Swêdê, ji bo teşwîqkirina xebatên aştiyê û bidestxistina encamên erênî ji Komîteya Nobelê li Norvêcê pêşniyaz dikim ku, Xelata 2014 ya Nobelê bidin Abdullah Öcalan. Xelatkirina rêvebirên hêzên ku bi terorîstiyê hatine sucdarîkirin, bi pirsgirêkên siyasî ku xitimî ne û çareseriyê ve têkildar in, ne nû ye. ➜ 10



## Mirin, mayîn û Soma

Di karesata ku di dawiyê de li gor agahiyên fermî 301 karkeran jiyana xwe ji dest dayî de derket holê kontrolên mufetîşan 6 mehan carekê hatine kirin lê di dawiyê de her tim jî rapora ku kana madene di pola yekem de yê hatiye dayîn. Her wiha piştî bûyerê diyar bû ku li kanê tedbîrên ewlehiya kar nehatine stendin û di kana madenê de odeyên jiyînê nehatine çêkirin. ➜ 8





# Bajarê birîndar: Helebçe

VEDAT BADİKAN

Şarê birîndar, Hîroşîma ya Kurdistanê Helebçe xêliya herema Hawraman e... Bajarê Helebçe qezayeke Silêmani ye û li ser sînorê Rojhilatê Kurdistanê dikeve.
Helebçe li Başûr bajarê sereke yê Hawraman e. Hawraman yek ji deverên balkêş yên Kurdistanê ye. Hem erdnîgar û hem jî tevna etnîkî ya Hawramanê ji deverên din cuda ne. Li heremê bi zarava Goranî û bi devoka Hewramî tê axaftin. Herwiha bawermendên Ehlî Heq an jî bi navekî din Yaresanî jî li Hawraman bicîh bûne. Hawraman ji heremên Text, Jawerû, Gawerû û Lîhonê pêk tê. Ji van hereman Lîhon dikeve alî Başûrê Kurdistanê. Heremên din li ser Rojhilatê Kurdistanê ne.
Erdnîgara Hawraman ya Rojhilatê Kurdistanê li ser ostanên Kurdistan û Kermanşa ye. Hawramana Lîhon jî ku dikeve alî Başûrê Kurdistanê bi giştî wek Şarezor tê binavkirin û ji bajarên Halebçe, Pencwîn û gêk xopan û gundan pêk tê.
Hawramanî wek kesên mêvanperwer, qisexoş û kurdşînas tên naskirin. Taybetiyeke din ya Hawramiyan ew e ku gelê heremê gelek qîmet dide nirxên wek lîbas, adet û folklora kurdî.
Li bakûr bajarê Pencwîn, li rojava bajarê Silêmanî û li rojhilat Merîwan û Pawa û li başûr jî bajarê Xaneqînê cîranê Helepçê ne.
Helebçe 15 km. dûrî sînorê İranê ye. Xaka bajêr di navbera heremên Hawraman û Germiyan de cîh digre. Di demên kevn de ji herema ku Helepçê jî lê cîh digrit Şarezor jî dihat gotin.

### Bajarê eşîrên mezin

Halpeçe yek ji bajarên tevlîhev yên Kurdistanê ye. Demografiya bajêr ji Sineyî, Ciwanroyî, Baneyî, Qeredaxî, Silêmanî, Ehlî Heq, Merîwanî û Cafan pêk tê. Helebçe ya ku bajarê xanedanên navdar û mozayîka eşîrên wek Caf, Tawegozî, Hewramî, Ebabeylî û Şemîranî ye ewçend jî di nav ahengenkî de ye.
Şêniya bajêr niha nêzî 100 hezari ye. kurdên bajêr bi zaravayên soranî û goranî diaxifin.
Niştecihên Helepçê hemû kurd in. Kurdên bajêr pirranî muslumanê sunî ne. Li heremê kurdên Ehlî Heq jî hene. Demê kevn de ku bajêr nû hatibû avakirin li Helepçê taxekî cihûyan jî hebû. Pişt re wan bar kirine û çûne İsraîlê.

### Bajarê quntara Kelî Kewê

Çiyayên berztirîn yên derdora Helepçê, Balambo û Kelî Kewê ne. Bajêr li quntara van çiyayan hatiye damezirandin.
Li rojavayê bajêr Deşteke mezin belavdibe ku digîje Deşta Germiyan. Li ser vê deştê kiştûkal tê kirin û li baxçe û zewiyên heremê fêkîvanî tê kirin. Fêkiyên xaka heremê jî navdarin. Bi taybetî hinarên Helepçê li gelek cîhên dûr jî tên firotin.
Çiyayên Helepçê û binaxa wê di warê madenên pîşesaziyê de dewlemendin. Wek mînak li xaka heremê neft, çîmento, xişt, şûşe û elemînyon derdikeve.
Erdîma bajêr li Kurdistanê yek ji cîhên herî xweşe. Seyrangehên wek Ahmedava, Avaser û Serawî Suphanaxa di demên kevn de cîhên tûristîk bûne. Di serî de ji Silêmanî heta başûrê Iraqê gelek kes di mehên havîn û biharê n bo geştê hatine bajêr.
Navê bajêr ji mêj ve wek Helebçe tê lêvkirin. Li gor jêderên dîrokî ev nav, ji navê mîrê İlamiyan Helewşe hatiye ku wî hingê bajêr ji dagira Asûriyan rizgar kiriye û navê wî li heremê bûye.
Piştî qetlîama sala 1988'an bajarê kavilkirî wek Helepça Şehîd hatiye binavkirin. Taxên nûh yên bajêr ku piştî bombardimana kîmyewî hatin avakirin ji wek Helebçe tên binavkirin.

### Cîhwareke kevnare

Li gor belgeyên dîrokî herema Helepçê berî zayîyê di salên 300'an de avadan bûye. Beriya zayînê ji salên 3'an vir ve herem beşek ji welatê Zamûa bûye.
Zamûa bi giştî ji heremêm Germiyan, Qeredax û heta Urmîyê pêk tê. Gundekî bi navê Zemaqî kîlometreyekî dûrî bajêr e. Li aliyê din di kolanên salên dawîn de li heremê gelek şûnewarên dîrokî dertên rûyê erdê.
Li gorî jêderên dîrokî bajêr di sala 1750'an da hatiye avakirin. Helebçe ji ber ku li ser sînorê başûr û Rojhilatê Kurdistanê ye, di serdema Osmanî û Sefewiyan heta parvekirina Kurdistanê, carcaran di navbera van dewletan de dest guhertiye. Herwiha jî gelê herêmê li hemberê dewletên dagirker her ber xwe da ye û li heremê hetim serhildan hebûne.
Helebçe ya îroîn berî 300 salan hatiye damezirandin. Di demên pêşîn de 13 malbatên eşîra Caf li bajêr bicîh dibin. Paşê 20 malên Cihû li kelêka wan bicîh dibin. Bi vî awayî li bajêr taxên ku bi hijmara malan tê naskirin peyda dibin. Piştî ku mîrekî Caf li heremê bi cîh dibe êdî bajêr geş dibe û ji derûdorê gelek kes tên û cîhwar dibin.
Di dawiya sedsala 20'an de ji eşîra Cafan Wesman Paşa û piştî mirina wî jî Adile Xanima navdar li bajar hukum ajotine. Helebçe di sala 1889'an da bûye qeza. Di demên pêşîn de bi Kerkûkê paşê jî bi Silêmanî ve hatiye girêdan.
Helebçe ji mêj ve yek ji heremên welatparêz û serhildêr bûye. Di dema İngîlîzan de di salên destpêka sedsala 20an de li dijî dagira İngîlîzan û paşê jî li dijî Ereban gelek car serhildan rûdane.
Serhildana sala 1961'an ya Başûrê Kurdistanê li Helepçê gelek alîgir dîtiye. Herwiha di şerê sala 1974'an de balafirên Baasî bajêr bombardiman kirine û 55 kesî jiyana xwe jidest dane. Di salên 1982 û 87an de jî Helebçe ji alî rejîma Baasî ve dû caran hatiye valakirin û dû caran ji hêzên rejîmê hatiye rizgarkirin.
Di dema şerê İran û Iraqê de di roja 16ê Adara sala 1988an de ji alî rejima Saddam Huseyin ve bajêr bi bombeyên kîmyewî hat wêrankirin. Di bombardimana ku 3 saatan ajotibû de pirranî jin û zarok 6 hezar û 357 kes bi jahrê jiyana xwe ji dest dan û 14 hezar û 765 kes jî giran birîndar bûn.
Hingê şêniya bajêr 50 hezar bû. Li gor çavkaniyên saziya tenduristiya cîhanî di navbera 20 salan de ji sedemê vê erişa jahrê ji heremên kîmyakirî 43 hezar û 753 kes mirine û 61.200 kes jî seqet mane. Fexredîn Hecî Selîm ku di komkujiyê de gelek kes ji malbata xwe wendakiriye yek sedemên qetlîmê wiha

şîrove dike.
Piştî ku di vê êrişê de bajêr hat ka-vilkirin li jora bajarê kevn bajarekî nûh hat avakirin. Ji ber vê yekê navê Helepçê niha wek 'Helebçe Şehîd' tê lêv kirin. Bi vî awayî zarokên ku di 40 salên dawîn de li Helepçê hatine dinê di bin bandora psîkolojiya qetlîamê de mezin bûne û ev yek li ser giyana wan hîn jî tesîreke neyînî dike.
Li aliyê din piştî serhildana azadiyê ya sala 1991'an vir ve Helebçe Şehîd ji nûh ve nehatiye avakirin. Herwiha hukûmeta Kurdistane û ya Bexdayê jî alîkariya malbatên gorî û birîndarên Helepçê nekirine.
Ji ber vê sedême gelê bajêr ji rejima Kurdistanê gazînan dike û nahêlê di salvegerên qetlîamê de rayedar serdana bajarên wan bikin. Ev yek bûye sedem ku di sala 2006'an de movûmeta qetlîamê ji alî bajariyan ve bê şewitandin.
Li aliyê din ji bo bîranîna komkujiyê li Gundê Qenapê ser riya bajêr hin abîdeyên bîrdariyê hatine çêkirin.

**Bajarê edîban**

Helebçe herçend bajarekî biçûke jî di dîroka edebiyata kurdî de rolekî me-zin leyistiye. Helebçe ku salên dirêj ji alî begên Caf hatiye birêvebirin bûye bajarekî rewşendost. Begên Caf bi rewşenbîrî û şaîriya xwe navdarin.
Li aliyê din wek mînak li hemû Îraqê yekem car koleja keçan li vê derê hatiye vekirin.
Li bajêr şaîrên wek Goran, Ehmed Muxtar Caf û Raûf Yehya gihane.
Romana kurdî ya yekem ku bi navê Meseleyî Ucdan tê naskirin ji alî Eh-med Muxtar Caf ve li Helebçe di salên 1920an de hatiye nivîsandin.
Helbestvan û siyasetmedarên wek Fa-yiq Bêkes, Tahir Begê Caf jî ji Helepçê ne. Îro jî nivîskar û rewşenbîrên weke Hekîm Mela Salih û çendîn kesên din rewşenbîrên navdar û naskirî ne.
Şaîrekî Helebçe yî Salahê Reş behsa binemala Caf û xizmeta wan ya ede-biyata kurdî dike.
Ehmed Muxtar Caf ku di dîroka ede-biyata kurdî de yek ji navên sereke yê serdemê ye ewçend di nav Heleb-çe jiyan de wek remz tê bibîranîn.
Pîrekalekî Helebçe yî Hecî Baqî Mihemed ku 83 salî ye dema behsa Helebçe ya kevn dike peşîyê Eh-med Muxtar û Şêx Eliyê stranbêjên bajarên xwe bibîr tîne.
Îro jî li Helepçê gelek rewşenbîr piştî komkujiyê jî xebatên xwe didomînin. Li bajêr niha nawendeke rewşenbîriyê heye û 4 govarên edebi-yat û çandî tên derxistin.





# Ji sînoran mirin dibare ser kurdan

**BasNûçe**

Beriya çend rojan di bûyera ku li Cizîr a Şirnexê qewimî de Saadra Derwich a 28 salî ku tevî du zarokên xwe û bavê xwe xwestin ku derbasî bakur bibin, ji alî leşkerên tirkan ve hate kuştin.
Piştî bûyerê derket holê ku Darwich bi zarok û bavê xwe re, li ber komên îslamî yên radîkal reviyayê û bere xwe da ye Tirkiye ku hevserê wê jî bi heman hince-ti demek berê gihayê Stenbolê.
Lê rêwitiya wê di sînor de asê ma.
Weke din jî gelek kurd ên ku ji Rojava berê xwe dane başûr bi heman avayî hatin kuştun. Yek ji van jî Ali Özdemir (13) bu ku ew jî di heman rojê de, weke Darwich bi heman hincet û ji alî heman kesan ve li ser sînor bû hedefa guleyên leşkerên tirk.
Özdemîrê ku gule ji eniya wî rast hatiye niha di nexweşxaneyê de di rewşeke xeter de ye.
Di 14 Catmeh a 2013'an de kurdekî ku ji Amûde'yê bû li ser sînor hate kuştin. Sedem heman sedembû. Welatiyê bi navê Siya-mend. Di 17 mijdar a 2013'an de li Nisêbînê, welatiyê bi navê Yasîr Ehmed Abdullah ku xwest biçe Qamişlo, tevî birayên xwe yên bi navê Amir û Yasîr Abdullah û 3 kesên din ên ereb bi heman sedem û berpirsiyariyê hatin kuştin. Di 19 berfanbar a 2013'an de li Akçakale ya Rihayê Hasan Bakdurê 16 salî li ser sînorê Rojava di bin wesayîteke leşkerên tirk de ma û jiyana xwe ji dest da.



Dîsa di 7'ê Adara 2014'an de du malbatên Rojavayî li Cizîr a Şirnexê bi hinceta ku xwestin derbasî bakur bibin, di bin gu-lebarana leşkerên tirka de man. Di bûyerê de kes nemir lê 3 kes birîndar bûn. Bûyerên ku li ser sînorên rojava diqewimin û yên ku hatine bihîstin ev in. Li gorî çavakaniyên heremî ew îstatîstîk pir kêm e ji rû ya rast.
Baro ya Wanê ku li ser mijara kuştinên li ser sînor raporek amada kiribû da zanînin ku navbera 2003 û 2013'an de tenê li ser sînorê Îranê 120 kurd ji alî leşkerên tirk û faris ve hatine kuştin. Her wiha li gorî agahiyên fermî ev hêjmar 90 e.
Di mijara kuştinên li ser sînoran de tişta balkêş ev e ku berpirsên tu bûyeran nayên darizandin. Li gor qanûn û makeqanûnan heke yek bixweze ji sînor biborê divê bê kuştin. Yan jî mafê kuştinê di deste leşkerên li sînor de ye. Tevî biratiya rêxistin û şexsiyetên kurd ya tirk, ereb û farisan, kurd li sînoran neçar in ku bimirin...

# Çar damarên qutbûyî hê jî negihêştin hev!

RAWÎN STÊRK

Weke her gelên Rojhilata Navîn di nava kurdan de jî bi taybetî ji ber ku dîroknûsî nebûye mijar û di warê civaknasiyê de dokûmant li holê nîn in neqla dîrokî û çandî bi riya destan û stranan heya roja îro bi jiyîn bû ye. Destanên kurdan jî carina tehma çaxa Yewnan a Antîk digêhîna bilêvên mirov û carina jî tû dibînî qonaxên felsefeyên an jî yên mijarên teorîk bi hemû îronî xwedî dersdayinê dirêjî ber çavên mirov dike. De ku mijar kurd û Kurdistan be jî hem di warê xayîntî, hem di warê birakujî, hem di warê xêrnexweziya navberî û hem jî di warê guhezîna çandî de têra mirov ders û peyam û rexne û ji bo pêşerojê rê û rêbazan li ber mirov radixe. Helbet hemû destanên din jî têra xwe di vê xalê de xwedî asteke bilind in. Lê dema ku mirov li destana Derwêşê Evdî dinêre, bi taybetî jî di çarçoveya netewebûnê de û helbet di hela evînê de ji êş, elem, coş, xayîntî û parêzgeriya erdnîgariyê de têr e û ji serê mirov zêdetir. Li hemberî Destana Evdî hewceye bi çav û nêzikahiyeke hemçax û xwendineke gerdîşî mirov roja îro bihûrîne û dembihoriyê ji bo 'sibê' bike rêzikeke têrzan.
Tenê ku tu bere xwe didî fîgurê destanê Temir Axa, meriv dê bi her avayî bikarê ku ji Alayên Hemidiye bigire, heta cerdewaniya îro, hê firehtir heta mêtinger û mexdûrên metingeriyê, heta Sendroma Stockholm'ê jî gelek teoriyên ku li ser wan lîtaretûrek hatiye lênan di bêjingê re derbaske. Aliyekê vê destanê yê din î serkeftî jî ev e ku xwediyê dewlemendiyeke wisa ye ku hem ji bo zarokan xwediyê çîrokzimaniyeke watedar e, hem di warê dîtin û ramanên felsefik û civaknasiyê de xwedî mîhengên balkêş e.
Heke mirov bixweze êş û keder a Derwêş û Edûlê'yê tê bigêje, destpêka vê qonaxê dîsa Temir Axa ye ku pêşengê eşîra Milla ne herwiha pêşengê kurdan ye jî. Piştî ku Erebên reş hewl didin ku warê Milla ku ji Wêranşarê dest pê dike û heta Şengalê ye bi destxin, Temir Axa neçar dimîne ku hawara xwe bigihîne pêşengê eşîra Kerdiz'a Evdî Axa ku bavê Derwêş e. Di vê qunaxê de her çiqas ku nêzikahiya Temir Axa li ser gelek hesab û plansaziyanbe jî, bersiva Avdî Axa ji bo cîrantî, netewebûn, biratî, bindest-serdestî û mîtingeh û mêtingehbûnê baldar e. Evdî Axa hewara ducar nake û ji bo piştgiriyê li rê rewan dibe. Evdî Axa helbet hişyar e ku zordariya ereban wê tenê li ser Temir Axa nemîna. Evdî hişyar e ew zordarî sibê roj li ser erdnîgara Kurdistanê teva ye. Hesabên Temir axa ne xem in ji bo Evdî. Piştî şerê ereb û kurda, arteşa ereban a hezar 700 kesî pêk tê têk diçe kurd heta demekê ji belayekê tên şûştin. Û her wekî din Temir Axa jî.
Lê dema ku Evdî ji bo piştgiriyê digêje qonaxa Temir Axa, rastî nêzikahiyeke bê rûmet û biçûkdîtî tê. Temir, Evdî di qonaxa xwe de li bêşa ku ji bo jinan bi kar tê dihewîne. Her çiqas ku li qonaxê hevandin paye bilindiyekê nişan de jî, li bêşa jinan hewandin li Kurdistanê tê wateya biçûkxistinê jî. Temir ji xwikşâ xwe ya bi navê Rahmen'ê qehweyê dixweze. Rahmened qehweyê li ser tepsiyeke zêrinî pêşkêşî Evdî dike. Di vir de nêzikahiya Rahmen'ê xwedî rûmetekê ye. Ew şiyar e ku hewandina li aliye jinan ji bo Evdî biçûkxistin e û bi tepsiya zêrinî hewl dide da ku rêza Evdî ya ketî bilindtir bike.



Evdî piştî vê sere xwe radike û di çavên Rahmende yê de dikeve hembêza evînê û her mijar ji bo wî ji paniya Rahmande'yê berjêrtir dimîne êdî. Temir ji meseleyê ayîx dibe û soza ku Rahmeh'ê bide Evdî dide. Helbet Temir dîsa di navê hesabekî din de ye. Evdî bi serxweşî û coşa Rahmen'ê hefteyekî dibore û piştî hefteyekî zarî mala wî tê bîrê. Bi destûra Temir ji bo dîtina zarokên xwe bi rê dikeve.
Evdî piştî dîtina zariyên xwe dîsa vedigere ger Temir Axa lê, ya ku dibî wî ji binî ve têk dibe. Ala tirka bi qanaxê de daliqandiye û şahiyek li ber qonaxê niştecî ye. Koleyê Temir Muhammed digêje Evdî û avayeki tund dibeje wî, "Bi te re wijdan nîn, tu bi çi rûyî tê yî daweta Rahmen'ê?". Evdî wê çaxê tê digêje ku Rahmen dane Bakir Axa û xapandina Temir Axa dinyayê li sere Evdî teng dike. Temir Axa kare xwe bi Avdî bi kirin daye û ew avêtiye aliyekî. Lê êrîşên ereba bi dawî nabin.
Li ser vê eşîra kerdiza ji milla vediqete û soz deda xwe ku êdî linge xwe navêje milkê Millan. Piştî çend salan ereb bi vê dihesin û careke din xeberekê ji Temir re dişinin û daxwaza haziriya şer dikin. Temir zane

ku êdî ew xeber ne tene ji bo şer e û rewş ev e ku dê dawî li eşîra wî bê. Li ser vê yekê Temir emra civînê ji bo 32 hezar begên eşîrê dide. Heya began ji sedema civînê nîn in û li gor wan divê ku dîsa şahiyek hebe. Hemû ciwan, beg û kalên eşîrê weke 3 dîwana kom dibin. Dîwana yekem beg û dewlemend, ya didoyan qehreman û mêrxas û sise ya kal û kesên bi asteng. Piştî ku cimeat bi temamî kom dibe û rûdine, Temir Axa dîsa qehweyekê dixwaze. Bi hatina qehweyê Temir axa radibe ser xwe û, "Nebêjin ku ew qehwe beredayî û erzan e. Ew qehwe bi xwin e. Heke ku em rê li ereban negirin dê dawiya me bînin. Heke ku namûs e, namûsa me hemûyan e. Heger ku hun singa xwe li ber tirk û erebên dijmin bikin mertal û bi saxî vegerin ezê Edûle'yê bidime we. Ezê rihêla wê jî amade bikim û nikahê çêbikim" dibêje. Piştî vê Mihemmed'ê kole sê roj sê şeva tepsiya ku qehwe li ser e, li nava cimeatê digerîne. Çavê hemûyan li Edûle'yê ye lê cesaret ji kesekî re nîn e ku qehweyê bigire. Ji ber ku qehwe girtin tê wateya ku rê li ereban bigirin. Temir piştî 3 roja dibîne ku qehwe li ser tepsiye hê diğere û li ser vê radibe careke din bi nameyekê xeberê dide Evdî Axa. Evdî nameye dixwîne, dide bin baliva xwe û ji qasîd re dibe, "Here ji Temir re bibêje tu axayê millan î, ez yê Kerdizan. Tu têkiliya min bi te nema. Ez sond xwerî me û linge xwe navêjim cihê ku tu lê yî. Qasid radibe dikeve rê û di rê de rastî Derwêş tê.

Derwêşê Delal jî demeke dirêje ku evîndarî Edûleyê ye û dîtina qasidê Temir kêfxweş dibe. Piştî ku naveroka mijarê tê digêje, teqez diçe cem bavê xwe û destûra piştgiriya bi Temir re bide. Lê Evdî, "Temir yekî virrek e ku soza xwe bi cî nîn e. Û ya din jî şertê ku ji bo dayîna Edûle'yê dagirtî, ne şertê ku meriv bikare bi cîh bîne. Ez dizanim ku berdêla keziyên Edûleyê ne sindoqên zêran in, berdêl sere camêran in. Ew rê rê yeke bê veger e. Ji bo vê jî bi xeyalê vala de nece" dibêje. Piştî ku bav û Derwêş li hev nakin, Derwêş radibe û bang li dîwanê dike û dixweze ku biryarek bê girtin. Qala evîndariya xwe ya li Edûleyê dike. Li ser vê Evdî qenaat dike û ji bo piştgiriya careke din biryarê dide.

Di vir de helbet evîna Derwêş, ne tene Edûle ye. Piştgirî, cangorî, welatparêzî û netewbûn jî bingeha vê helwestê ye. Edûle, mirov bi rehetî dikare bibê ku ji bo Derwêş kurdistan bixwe ye, welat e. De ku Edûle dibîne ku fincana qehweyê sê rojin ku diğere û kesek cesaret nake ku rahêlê, aciz dibe û, "ma ji van 32



hezar seg, yekî ku cesareta rahêştina fincanê nîn e ku xeber ji Derwêş re hatiye şandin" dibêje û ew dizane ku Derwêş bimire jî bimîne jî serfirazî ye ji bo Millan.

Destûra axaftinê ji bavê xwe dixweze û weke sermiyanekî radibe ser xwe û ji bo 32 hezar begê li meydanê tê zimên. "Hun jî zanin ku 5 keçên bavê min he ne lê qet gedeyekî wî nîn e. Bixwe êdî kalekî 71-72 salî ye. De ka bala xwe bidin me. Ez dizanim ku ne mafê jinekê ye ku derkeve pêşberî ew qas mêran û weke mêrekî biaxife. 3 roj in ku we pişta xwe daye van balgiyan û hûn goştê berxa dixwin. Lê yekî ji we ûrag nekir ku rahêje wê fincanê. Ew şahiya millan e, ne ya kerdizan. Hun çim ali hember vê fincanê û denge min sere xwe ranakin. Hun dizanin ku dê Derwêşê Evdî wê bê û li ber çavên we hemûyan fincana qehwê rake."Dibêje. Lê ew dizane ku dê çi bê sere wê. Qet deng ji yekî nayê û 32 hezar beg sere xwe dike ber xwe. Di vê navberê de qasidek tê û hatina Derwêş 'mizgînî' dike. Temir dîsa emrekê dide da ku kesek kerdiziyan pêşwazî neke û kesek bi wan re eleqedar nebe.

Edûle û 5 xwişk deriye kon vedikin û dibinin ku kerdizî hatine, dikevin nava cimeatê û kesek silava wan nagire. Dema ku Derwêş dikeve nava cimeatê, Edûle dibe, "Min ji mevên re qehwe di êvar de amadekiribû. Evînê li sere min xist. Ez nizanim ku linge min kete pêlava wî. Bedena min dilerize. Sibê de 12 siwariyên me dê bi hezar 700 siwariyên tirk û ereban re şer bikin. Ezê 41 keçê milla bigirim cem xwe û ezê dakevim qiraxa Dijle'yê".

Derwêş kehwê vedixwe û tevî 12 siwariyan xwe berdide deşta Misûlê û şer dest pê dike. Şer weke tofanekê diqewime, her der dizivirê cihê mij û dûmên. Jin li ber deriyan radiwestin, jiyan radiweste û şer diaxive. Piştî demekê şer diqede û 12 siwarî xuya dibin lê bele Derwêş di nava wan de nîn e. Edûle, distrê, "Va ye siwariyek tê. Sê roj bihorîn bi dû ku Derwêş xwe berda deşta şer re", nezikî siwarî dibe û dipirse, "ka delalê min"... Siwarî, "Bûkê delalê, gelek delal hene ku, bûk bi hineya dest ali bende ne. Ji wan delalan yek birîndar e û ber bi Sêwrekê ve çû ye. Ka ji min re bibêje, nîşana delalê te çi ye?".

Edûle distrê, "Nîşaneya delalê min diyar e. Kirasê wî melesîn e, zirh a li milê wî dawûdî ye, eba ye ke aganî li mil e. Li singa delêl berçavkeke bi zirh, li pişte kemberek heye. Şalê delêl felemîn e, pêlav ji keziyê keçan. Sere delêl bi kofu ye, simbêl sor, dêm hinar. Mertala delêl amedî ye, pozê mertala wî bi keziyên Edûleyê xemilî ne".

Siwari, "Ew ê ku tu dibêjî Derwêş e kurê Evdî. Fîncan a bi jahr rahêşt û li deşta Misûlê çavê tirk û ereban tirsand. Hemû birîndar û mirî bi destê wî bûn. Wî çend ocaxê dest bi hineyan şewitand. Lê linge hespê wî ket korteke mişkan û şikest. Hespê ew ji ser xwe avêt û hemû hestiyên Derwêş şikestin. Here deşta Misûlê û wî bibîne beriya mirinê".

Piştî vê minasebetê Edûlê bere xwe dide deştê û distrê, "ez beziyam û gihêştim Delêl. Xwîna namûsê ji zirha wî re diherike. Delal birîndarbû ji heft cihan. Min li birînê nihêrî ku hespê li cîgerê xistiye. Dizanim ku hespên kurdan jî kindar in. Piştî ketiye erde pişt şikestiye. Bi derbeya ku li sîng xistine 4 damarên wî qut bûne."

Di destanê de xala heri berbiçav, pêywendiya evîn û welatperweriyê ye. Çiqas ku Edûlê'yê weke evin û miraz welat hilbijartibe û xwe ji bo eşîrê feda kiribe jî, evin û eşqa xwe li ser Derwêş lê dinê. Ji bo wê jî weke Derwêş, evin û welat dibe heman tişt, dibe Derwêş. Ji bo herdû karakteran jî ewîn temsîla welêt e. Dîsa derbeya ku hespê li Derwêş xistî, nişaneya xayintiya hundirî ye. Di nava kurdan de herkes zane ku xiyaneta li hemberî hev nebe kes nikare bi kurdan re têkeve şer. Dîsa dema ku Edûle ji siwarî delalê xwe dipirse û wî tarîf dike, bi nîşaneyên Kurdistanê wî dinasîne. Û her wekî din 4 damarên ku di cîgarê de qut dibin jî çar parçeyê kurdistanê nişan dide. Korta tijî mişk û hespê wî lê ase dibe jî, kurdistan e ku ji alî dijminan ve hatiye dorpêçkirin. Sonda Edûle'yê ku dê êdî evîndarî kesî nebe, nêzikahiya wê ya li hemberî azadiya Kurdistaneke serbixwe nişan dide.

Taybetiyeke destana Derwêşê Evdî jî ev e ku bûyerên ku qalê dike hemû rast in û li Kurdistanê qewimîne. Di destanê din de motîfên mîtolojîk gelek bi kar hatine lê ev destan bêhtir li ser mijarên jiyînî disekine. Dîsa di bêşa yekem a destanê de di derbarê eşîrî, mêrxasî, welatparêzî, û rewşa civakî ya kurdan hatiye lênan. Di bêşa duyem de zêdetir li ser evîna di navbera Edûle û Derwêş radiweste ku li vir dîsa gelek mijarên mêtingeh û mêtihgehiyê di ber çava re derbas dike.

Di destanê de karaktera Derwêş bi temamî merxasî û egidiya ku ji bo serfirazi û azadiya Kurdistanê hatiye lê nan. Di encamê de dema ku mirov li siyaset û rewşa ku niha li ser xaka Kurdistanê nûjen e dinêre, derdikeve holê ku pêwîste ku mirov careke din vegere û li destanên ku bi sedan salan bere li ser rewşa kurdan a wê demê hatine zimên binere û hinek jî dîrokê sûd wergire. Ji ber ku hê jî şerê di navbera kurdan de bi dawî nebû ye û çarparçebûn hê jî qederek e ji bo Kurdistanê.



# Munaqeşeyê lehçe û ziwanî de problemî






**Helbet kesê xerîbî ke zazakî ser o xebitîyayê heme girêdayeyê dezgeyanê mîsyonerîye nîyê, cigêrayox yan akademîsyenê cîya-cîyayî zî zazakî ser o xebitîyayê.**

**Feraza, ma vajin ke îlm de terazî, mêzîn yan zî formulêk esto ke eşkeno "ziwan" û "lehçe" cêra abirno. A game, gereka tena çekuyan ser o ney, sîstemê ziwanî analîz bibo.**

ROŞAN LEZGÎN

Munaqeşeyê derheqê "zazakî" û "zazayan" de xususîyetêko muhîm no yo ke, vera kesanê ke zazakî aver benê, nusenê, edebîyatê zazakî anê meydan de muxalefetêko bêedeb beno. Mesela, tayê merdimî bi nîk-nameyanê cîya-cîyayan, networkanê sosyalî yê sey Facebookî de vera aktîvîstanê ke zazakî aver benê de hertim vateyanê teberê exlaqî de vanê, nengan çînenê. Bi tirkî qisey kenê yan zî nusenê, vanê "zazakî ziwanêko cîya yo" la kesê ke zazakî qisey kenê û nusenê û edebîyatê zazakî anê meydan rê zî dişmenîye kenê.

No munaqeşe de tayê çî estê, zaf mubalexe benê. Sey nimûneyî, bitaybetî xerîbanê ke derheqê zazakî de çîyê nuşto, nameyê hemîne rêz kenê û vanê "nê alimî" yanî "bilim adamları vanê zazakî ziwanêko xoser o". Tîtrê înan çi beno wa bibo, merdimanê xerîban çi nuşto, bêteredut vanê "no îlmî yo", yanî "bilimsel o." Îlm çi yo, bilim çi yo, nuşte senî beno îlmî, yan zî yew merdim senî beno alim, senî beno bilim adamı, qet hewce nêvînenê ke îzeh bikerê.

Mesela, C. M. Jacobson, Eberhard Werner, Brigitte Werner ke nê munaqeşeyî de nameyê înan vîyareno, dezgeyanê mîsyonerîye reyde hemkarîye kenê. Seke yeno zanayîş alemê xirîstîyanîye de mîsyonerîye edetêko kan o. Merkezê fealîyetanê mîsyonerîye de tadayîşê Încîlî bi heme ziwananê dinya esto. Yanî wazenê ke Încîlî bitaybetî tercumeyê ziwananê grûbanê zeîfan bikerê û Încîlî ser o xirîstîyanîye vila bikerê yan zî xirîstîyanîye sempatîk nîşan bidê. Seba naye dezgeyî roniyayê. Nê dezgeyî hîna zaf ziwannasan û akademîsyenan reyde hemkarîye kenê, înan ra ardim gênê. Mesela, Maurizio Garzoni (1734-1804) ke reya verêne gramerê kurmanckî (Grammatica e Vocabolario della Lingua Kurda) ey nuşto, nê tewir merdiman ra yo. Seba ke kurmanckî bimuso, qasê vîst serrî mîyanê kurdan de ciwîyayo. Ancî, Andranîk ke bi nameyê "Dêrsim, Raywanîye û Cografya" yew kitab nuşto, o zî mîsyoner o.

Dezgeyê mîsyonerîye, melumato ke danê arê, sey data-bank (veri bankası) arşîv kenê. Mesela, dezgeyê sey Ethnologue Languages of the World, SIL (Summer Institute of Linguistics) û Joshua Project nînan ra çend heb ê. Xebata Eberhard Wernerî ke derheqê tercumekerdişê Încîlî de ya, û tede behsê tercumekerdişê Încîlî bi zazakî zî esto, keyepelê Ethnologue de mîyanê referansan de ya. Helbet kesê xerîbî ke zazakî ser o xebitîyayê heme girêdayeyê dezgeyanê mîsyonerîye nîyê, cigêrayox yan akademîsyenê cîya-cîyayî zî zazakî ser o xebitîyayê. La qismêko muhîm yê kesanê ke zazakî ser o xebitîyayê û hertim sey "bilim adamları" behsê înan beno, bi taybetî kesê almanî, eşkera yo ke dezge yan zî weşananê mîsyonerîye rê xebitîyenê.

No munaqeşe de çîyo balkêş no yo. Kesê ke dezgeyanê mîsyonerîye rê xebitîyenê, tim têkilîya înan û kesê ke vanê "zazayî kurd nîyê" esta. Na têkilîye de her di hetî zî yewbînan weye kenê. Kesê ke vanê zazayî kurd nîyê, seba ke tezanê xo rê bingeyêko akademîk virazê, yan zî fikrê xo bi fekê akademîsyenan bidê vatiş, xo resnenê nê kesan. Tabî akademîsyenî zî seba ke melumat bidê arê, hewceyîya înan bi merdimanê winasîyan esta.

Nînan ra êyê ke ma zanê, Ludwing Paul, Jost Gippert, Eberhard Werner, Brigitte Werner û beno ke hema zaf kesan netîceyê na têkilîye de dest bi xebata zazakî ser o kerda. Ancî C. M. Jacobson zî bi no qayde yo. Derheqê zazakî de di kitabê ey estê. Her di zî fekê Dêrsimî de yê. Heqîqeten nê kitabî ey nuştê? O hende baş kirmanckîya Dêrsimî zano? Ez şubhe de ya! Kesê ke dezgeyanê mîsyonerîye rê xebitîyenê, eleqeyê înan hîna zaf bi elewîyan sînorkerde yo. Ez vana qey wina bawer kenê ke fealîyetê mîsyonerîye mîyanê elewîyan de hîna rehet beno coka hende bala înan fekê Dêrsimî ser o ya. Helbet heqê her kesî esto ke zazakî ser o bixebitîyo, binuso, fikrê xo çi beno wa bibo, eşkera vajo yan binuso. La ganî ma zî bala xo bidin ser ke, nê kesî bi kamcîn saîqî zazakî ser o xebitênê. Yê diyin, verê verkan gereka ma vate yan zî nuşteyê înan baş fehm bikin, analîz bikin, test bikin ke hela çiqas rast yan xelet o. Mesela, tayê xebatê ke hetê xerîban ra bîyê şefaf nîyê. Mi behsê nuşteyê Mustefa Dehqanî kerdbi. La yewna numûne zî nuşteyê Jost Gippertî yo. Destpêkê meqaleya xo de vano "Tayê embazê ke tîya amade yê, bîyî sebeb ke ez verê xo bidî nê ziwanî ser. Nêzdîyê serrêk o ke ma pîya gramerê nê ziwanî tetkîk kenê." Nameyê nê embazan çi yo, kam ê, çi kes ê, dîyar nîyo. Madem xebata ey "îlmî" ya, qey nameyê hemkaranê ey nimite bo? Îlm de çîyo nimite yan zî nimitişê çîyan çin o.

Meqaleyê ke akademîsyenan derheqê zazakî de nuştê, zêde tetkîk nêbîyê. Yanî test nêbîyo ke îdîayê înan çiqas rast yan çiqas xelet ê. Xora meqaleyanê kesanê xerîban de bi hawayêko qetî îdîa nêbeno ke zazakî ziwanêko xoser û zazayî zî kurd nîyê. Eksê naye, mesela, Ludwig Paul vano "Di varyantê ziwanêk hetê kulturî ra beno ke her yew sey lehçeyêk tarîf bibê, hetêk ra zî beno ke temamen sey ziwanêkê xoserî tarîf bibê." Paul dewam keno vano, "Persa 'ziwan' û 'lehçe' tarîfkerdiş û taybetîyan ra girêdaye qismen keyfî ya." Yanî yew tarîfo sabît û îlmî ke bi hawayêko qetî "ziwan" û "lehçe" cêra bikero, çin o.

# ‘Deyîrî Çewlîgî’ Vejîya

**BasNûçe**

Nuştox, rojnameger û xebatkarê ziwanê kurdî/kirdkî û nuştoxê sîteya ma Seyîdxan Kurij 2013 de hîrê kitabî weşanaybî. Înan ra di kitabî telîf, yew zî açarnayîşî bi. Nisan 2014 de yewna kitabî Seyîdxan bi nameyî “Deyîrî Çewlîgî“ ame neşirkerdiş.
Kitabî Deyîranî Çewlîg, Îstanbul de weşanxaneyî Nas çap kerd. No kîtab de deyîrî sîyasî, egîdê û lorîyî, govend, xêrîbîye û deyîrî zêr yan zi deyîrî koyan pêro pîya 112 deyîrî estî. Heme deyîrî dormareyî Çewlîg û Pali yê. Xercî deyîran kîtab de fekî Çewlîgî sero yew nuşte û cuyê tayê dengbêjan sero malumat zî esto.
Seyîdxan Kurijî sey endamê Gruba Xebate ya Vateyî nêzdîyê vîst serran a kirdkî rê xebat keno. Heto bîn ra na xebata xo ya grubî, wareyê rojnamegerîye de tetbîq keno. Her ware ser o nuşteyan nuseno.
Nuştoxî kîtabî “Deyîrî Çewlîgî” Seyîdxan Kurij derheqî na xebatê xo de kîtab de wina nuseno, “Sey zafê qicanî Kurdîstanî mi zî qijkekê xo de bizyewanê (şiwanê bizyeyan) kerd. Ma bizyeyan ver de, serî koyan de tim û tim deyîrî vatênî. Ma bizyeyan ver de hêna zaf deyîrî egîdan, deyîrî xerîbê yan zi deyîrî zêr vatênî. Her deyîrê egîdê yew hîkayeya xo esta. Wexto ke ez bi xo dew de bîya zî, taye hedîseyî bîy, merdimî ameyî kiş-tiş. Xortanî dewê ma ca de nê hedîseyan ser o deyirî vetênî. Ma zî zaf lez nê deyîrî ezber kerdên û vatênî.
Ez hama zaf qic bîya, ez şîyenî vêveyan. Verî mi pîlî xo xortî dew, temaşe kerdênî. Cuwa pey mi destî înan girewtêni, dora peyênen de, mi zî bi înan a pîya govend girewtênî. O wext vêveyan yew hefte ramitênî. Hetî ma de (Çolîg, Depi, Pali) saz û hacetî muzîkî yê bîn çîn bîy. Nika zî dewan de saz û hacetî muzîk yê bîn çîn î. Ma vêveyî bi def û zurna viraştênî, yan zî ma bi xo deyîrî vatênî û govend girewtênî. No rid ra hetî ma di deyîrî govend zaf ê. Heta bi deyîranî egîdan zî govend gerîyena. Zafê deyîranî egîdan bi “şûno şûno” dest ci kenî û bi nê deyîranî “şûno şûno” govend gerîyena. Ez zafê, nê deyiran qijkekê xo de vêveyan de musaya. Yanî ez zafê nê deyîran ezbere zana. La hanc zî mi zafê nê deyîran dew de yan zî Almanya de dayî xortanî Kurijan vatiş. Nê deyiran vêve de, di kesî pîya vanî, di kesî bîn zî înan dima vanî. Ge ge cînî û camîyerdî pîya vanî. Di kênê vanî, di xortî înan dima vanî. Sebebo ke goreyî olî îslamîyetî saz cînîyayiş gûne yo, ma het de saz edet nibîyo. La ma het de vêveyan de cînî û camîyerdî tê dest de govend genî.
Se ke mi va, yew qisimî nê deyîran mi xortanî “Kur” ra girewtî. Kur yew dewê Çolîg a, yanî dewê min a. Yew qisimî deyîran mi cîya cîya hozanan ra girewtî. Ez şîya, mi fekî înan ra girewtî kasetan. Yew çend hozanan, Çolîg de keyeyan de kasêt qeyd kerdî, yan zî yew vêve de nê deyirî qeyd bîyî. Yew çend deyîrî zî mi îna girewtî.
Ma 1997 ra nat bi nameyî “VATE” yew kovara kirdkî(Zazakî) neşir kenî. Na kovar de zî çend deyîrî kirdkî neşir bîyî. Mi bi musadê arêkerdoxan yew çend deyîrî zî îta ra girewtî. Arêkerdoxî nê deyiran Abdulmutalîp Koç, Gawanê Welatî û Xecê Mallûn Qasûn î. Nê deyîrî M. Selîm Uzun redakte kerdî. Zafê deyîran mintiqa ra mintiqa, dew ra dew, heta ge ge dengbêj ra dengbêj cîya cîya vacîyênî. No kîtab di çend deyîrî estî ke cîya cîya varyantî înan estî. Mi ê varyantî sey orîjînal, o qeyde nuştî.
Ez 1990 ra nat ha nê deyîran top kena. Hema hema piyerê deyîran kasetan di bîy. Mi studyoyî radyoyê ma di “ Radyoya Dengê Kurdan li Duîsburgê” ne deyîrî dîgîtalîze kerdî. Kitabî mino verên (Wayê Hot Birayû ) 2002 de Îstanbul di Weşanên Arya çap kerdi. No kitabî de 23 deyîrî(lawikî) estî. Hancî çend deyîrî mi zî kitabî Mehmet Bayrak “Kürt Müziği, dansları ve şarkıları- Muzikî kurdî, reqs û deyîrî” de ameyî çap kerdiş. No kitab hîrye cîltî yo.
La no kitabî mi tenê deyîrî yî, pîyerê deyîran ke mi arêkerdî îta di ca genî. Ez îta de, kesanê ke mi rî nê deyîrî wendî, na xebat de ardimî înan resayo mi, pîyerin rî zaf spas kena.
Hancî ez semedê her qeyde ardimî înan a emzayî xo resam Mehmûd Celayîr rî dostî xo M. Selîm Uzunî rî zaf zaf spas kena. Hunermend Mucahît Goker tayê deyîran rî nota nuştî. Ez no semed a birêz Mucahît Goker û embazî ey S. Turkmen rî û semedê resimî qapaxîya emzayî xo Mehmud Celayîr rî hêna spas kena.”






# Ehmedê Xasî

**BasNûçe**

**Ehmedê Xasî nuştoxo tewr verên yê kirdkî (kirmanckî, zazakî, dimilkî) yo. Serra 1867 (hîcrî: 1283) de nehîyeya Licê Hezan de maya xo ra bîyo. 18 sibate 1951 de Hezan de dinya ra bar kerdo. Mezelê ey Hezan de yo.**
**Nameyê ey Ehmedê Sofî Hesenî yo. Mîyanê şarî de bi nameyê Xasî,Ehmedê Xasî, Seydayê Xasî û Xoceyo Xasî zî şinasîyeno. Nameyê babîyê ey Hesen, dadîya ey zî Medîna ya. Nameyê kalikê ey Mela Osman, nameyê babîyê kalikê ey Emer û nameyê kalikê kalikê ey zî Xan Ehmed o. Eslê xo eşîra Zîktî ra dewa Xasan (bi tirkî: Külçe) ra yo. Xasan, serê sînorê Dara Hênî û Licê de mezrayêka qijkek a. Kalikê ey Mela Osman ameyo Hezan de melayî kerda û êdî na dewe de mendo.**
**Di birayê bînî yê Ehmedê Xasî zî estbîyê. Nê, Mehemed Emîn û Mistefa yê. Mistefayî qijekîye de wefat kerdo. Xasî hîrê rey zewijîyayo. La tena cinîya eya peyêne ra yew kêna ey rê bîya. Kênaya xo birarzayê xo Mela Arifî reyde zewijnaya. Mela Arifî demeyêk Camîya Girde yê Dîyarbekirî de melayîye kerda.**
**Xasî tehsîlê xo Medreseyê Mesudîye yê Dîyarbekirî de temam kerdo. Îcazeyê xo destê muderris muftî Îbrahîm Efendî ra girewto (Hîcrî, 1 rebîulaxir 1320). Perwerdeyê tesewufî zî verê şêxê neqşebendî Şêx Evdilqadirê Hezanî het temam kerdo. Îcazeyê şêxêtî girewto la çi rey şêxêtî nêkerda.**
**Xasî, wextê xo de meşurîye zî kerda. Mesela hezîrana serra 1330 (H.) de seba muderrisîya merkezê Dîyarbekirî tayîn beno. Dima temmuza 1331 (H.) de bi se quriş meaş seba muderrisîya dewa xo Hezanî tayîn beno. Badê ke demeyêk nê wezîfeyî keno, na rey seba muftîyîya Licê tayîn beno la demeyêko kilm dima o bi xo nê wezîfeyî ra îstîfa keno. Muftîyîya ey di serrî û di aşmî dewam kena.**
**Badê ke îstîfa keno, agêreno dewa xo Hezanî û hetanî mergê xo uca ciwîyeno.**
**Ey kitabê kirdkî yo tewr verên Mewlidê Kirdî 1892 de nuşto, 1899 de Dîyarbekir de çapxaneyê Lîtografya de 400 nusxeyê ey ginayê çape ro û vila bîyê. No kitab hetanî nika çend rey transkirîbeyê alfabeya latînkî bîyo. Ehmedê Xasî bi erebkî, fariskî, tirkî û kurdkî (kirdkî, kurmanckî) nuşto.**
**Eserê eyê çap bîyê û nika estê nê yê:**
**1) Mewlidê Kirdî**
**2) Kitab-ut Tesdîd Bî Şerhî Muxteser-ît Tewhîd**

---

**Çimeyî:**
**■ Korkusuz, Şefik, Tezkire-i Meşayihi Amid, Diyarbakır Velileri I-II, Kent Yay. İstanbuli 2004, r. 63-65**
**■ Xasî, Mela Ehmed, Mewlûdê Nebî,Herfanê Erebkî ra tadayox: Mihanî, Fırat Yayınları, İstanbul, 1994, r. 52-53**
**■ Mela Mehemedê Mela Ebdulxefûrê Hezan**



# Di navbera mirin û mayînê de Soma

**Karesata ku 301 karkeran jiyana xwe ji dest dayî, bi pêk hatinên talî û daxuyaniyên çewt, ji encama xeter wêdetir bi mijarên talî li cîhanê deng vedide.**





**BasNûçe**

Piştî karesata ku li Soma ya bi ser Manisa'yê ve qewimî li Tirkiye tevlihevî û ne zelaliyeke balkêş di rojevê de cihê xwe girt. Bûyera ku li hemû dinyayê deng vedeyî li Tirkiye jî bu sedema gelek gengeşî û rûdanên tûnd. Bi hinceta nezikahiya Serokwezîr Erdoğan, muşawîrê wî û agahiyên wezîran yên çewt û êrişa polîsan a li Soma'yê rewş bêhtir zivirî cihekî bi mij. Di karesata ku di dawiya dawî de li gor agahiyên fermî 301 karkeran jiyana xwe ji dest dayî de derket holê kontrolên mufetîşan 6 mehan carekê hatine kirin lê di dawiyê de her tim jî rapora ku kana madene di pola yekem de yê hatiye dayîn. Her wiha diyar bû ku tedbîrên ewlehiya kar nehatine stendin û di kana madenê de odeyên jiyînê nehatine çêkirin. Lê di çarçoveya vê karesetê de hin tiştên din ên balkêş qewimîn. Wa ye rojnivîska Soma'yê

☛ Wekî din di encama karesatê de bilî êş û jana ku derktet holê, mijar bi meseleyên talî careke din li cîhanê reşî. Ji wan ya yekem protestokirina Erdoğan û silleya ku wî avêt welatiyekî bû. Weke tê zanîn rojek piştî karesatê Serokwezîrê Tirkiye Erdoğan çû Soma'yê û rastî protestoyan hat. Piştî wê Erdoğan xwe avête marketekê lê protesto berdewambûn. Erdoğan li vir sîlleyek avêt welatiyekî û mijara Soma'yê vê carê bi vê hate rojevê. Piştî Erdoğan vê carê dîmenên muşavîrekî serokwezîriyê hatin weşandin ku ew jî bi alikariya du tîmên taybet, welatiyekî dide ber pêhnan.

☛ Ji ber ku li qada kanê xebat di nava qelabalixî û bê rêk û pêk dihatin meşandin, malbatên karkarên ku di kanê de asê man di meraq û fikaran de hatin hiştin. Ji ber ku lêsteyên karkerên ku mirine û yên ku birîndar in ne zelalbûn tevlihev, gelek cenaze bi xeletî dan malbatan.

☛ Ji roja yekem heta niha di derbarê hejmara mirî û birîndaran de raporeke ku herkesi ikna bike derneket holê. Ji ber ku xwediyên madenê agahiyên saxlem di derbarê hejmara xebatkaran de neda, kes nizane ku çend karker di bin erdê de man çend derketin. Li gor îddiayekê zedêtirî 750 karkerî di kanê de asê mabû û yên ku bi avayeki derketine ne ewqas in. Dîsa îstatîstîkek balkêş jî ji alî İMC tv ve hate weşandin. Piştî bûyerê İMC li hemû şaredariyên Tirkiye bi riya telefonê gerî û derket holê ku li tevahiya welêt 321 cenazeyên ku li Soma'yê hatinê, hatine defin kirin.

☛ Piştî kiryarên serokwezîr û muşawîrê wî vê carê polîsan êrîşî gel kir. Li navenda Somayê bi hinceta protestokirina karesatê xwepêşandanek hate organîzekirin ku karkerên brîndar jî beşdarê bibûn. Ji ber ku di çalakiyê de hikumet hate protestokirin, polîsan bi bombeyên gazê û ava tazyîkê êrîşî çalakvanan kir. Di êrîşê de gelek kes birîndar bûn. Hem êrîşa polîsa hem jî pêkanîna serokwezîr û muşawîrê wî li hemû cîhanê bi avayekî berfireh hate rojevê û li Elmanya'yê rojnameyeke manşeta 'Führer Erdoğan' avêt.

☛ Ew pêkanînên hanê li Tirkiye jî bûn sedema înfialekê û li çar aliyê welêt protesto û xwepêşandanên bo Soma'yê hatin organîzekirin. 3 roj şîn hate îlan kirin û ji aliyên konfederasyonên sendîkayan, partî û rêxistinên civakî ve grev hate xwestin, li gelek bajaran karkeran kar berda.

☛ Di vê navberê de berpirs û xwediyên kana madenê 3 rojan derneketin holê, di derbarê karesetê de tu agahî nedan. Lê roja 4'an derketin pêşberî rojnamegeran û xwe parastin. Di derbarê kêmasiyên xwe û kanê de tişteki ber bi çav negotin û xwe bê sûc îlan kirin. Nêzikahiya wan jî nêzî ya serokwezîr bû. Ji ber ku herduyan jî karesat weke tiştekî xwezeyî hesibandin.

☛ Parêzer û gelek welatiyên ku ji bo piştgirî çûbûn Soma'yê rastî êrîşa nijadperestan hatin û gelek kes birîndar bûn. Tevî vê li hemû bajarên Tirkiye û Kurdistanê banga piştgiriyê hate kirin û kampanyayên alîkariyê hatin destpê kirin.

☛ Xaleke balkêş ya din jî nêzikahiya Wezîrê Xebat û Ewlehiya Civakî ya Faruk Çelik bû. Çelîk heta roja 4'a neçû cihê bûyerê û piştî ku çû jî daxuyaniyên beravajî û ne zelal dan û bû sedema gengeşiyê. Çelîk di axaftinên xwe de anî zimên ku raporek zelal û esas li holê nîn e.

☛ Xwendekarên Dibistana Teknîk a Stenbolê fakûlteya madenê işgal kirin û piştî çalakiyê navên kesên berpirs ên Soma'yê ji fakülteye hatin rakirin.

☛ Roja 6'mîn a karesatê kana madenê ji çûn hatinê re hate girtin û bi daxuyaniya wêzîrê enerjî ye derket holê ku dê devê kanê bê girtin û dawî li xebatan hat.

Di dawiya dawî de di çarçoveya karesata li Soma'yê de Tirkiye azmûneke ne baş da û hê jî gelek malbat bi daxuyaniyan tînin zimên ku êş ên wan her tim têne zêdekirin û gelek malbat jî hê negihêştine endamên xwe ku sax in an mirî ne.

# ‘Armanca me hiqûqa civakî ye’

**BasNûçe**

Piştî ‘Konferansa Hiqûqnasên Bakurê Kurdistanê’ ku di Îlona 2013’an de li Amed’ê pêk hat, hiqûqnasên kurd di 9’ê Gulanê de bi şiyariya “ji hiqûqa devletê berv bi hiqûqa civakê” civîna xwe ya dûyem lidarxistin û biryara organîzebûna bi navê Kurdistanê hat girtin. Konferansa a 2013’an ku gelek biryarên hatî girtin bi encamnameya dawiyê ji raya giştî re hatibû parvekirin, niha biryarên ku girtine li qada pratîk de bi cîh tîne. Li gorî vê dê komeleyek bi navê ‘Komeleya Hiqûqnasên Kurdistanê’ bê damezrandin.

Ruşen Seydaoğlu ku yek ji endamên komeleya ku dê ava bibe ye ji rojnameya me re agahiyên di derbarê pêwistiya avakirin û çarçove ya xebatê ya saziyê parve kir û diyar bû ku ji bo avakirina komeleyê di demeke nêz de dê serî li saziyên fermî bê xistin.


Ruşen Seydaoğlu

Seydaoğlu, di derbarê xebatê de wiha axivî, “ Piştî hevdîtina hiqûqnasan di 10’ê gulanê de li ser navê Kurdistanê biryar hat girtin. Di heman demê de van hiqûqnasan biryar girtin ku di lijneya avakaran de jî cîh bigrin. Ev biryarek mûazam e. Di warê fermiyetê de li ser navê Kurdistanê tu astengî tûnen in. Ger ku astengiyek derkeve divê wek biryarek siyasî bê dîtin. Ku zagon li gor berjewendiyên serdestan bê şîrovekirin em vê qebûl nakin. Vîneke demokrotîk derketiye holê û komele ji hêla me ve bi navê Kurdistanê dê bê demezirandin.”

Seydaoğlu wiha dirêjî da axvtina xwe, “Di îlona sala borî de bi tevlêbûna nêzikî 300 hiqûqnasên Kurdistanê re me konferans li dar xist. Di vê konferansê de derket holê ku, li Kurdistanê pêdivî bi rêxistinbûna hiqûqnasan he ye da ku bikaribin li hember zirar û bêhiqûqiya dewletê bisekinin. Ji xwe bo ku xebatên hiqûqê zêdetir derkeve pêş û li Kurdistanê xebatên bi bandor bê çêkirin ji 50 kesî meclîsek hat avakirin. Meclîsa Hiqûqnasên Bakurê Kurdistanê. Di vê meclîsê de kesayetên hiqûqnas û dezgeyên bo mafê mirovan têdikoşin cih girtin. Wek armanca konferansê me rêxistinîbûn girt rojeva xwe. Bo ku xebatên me bi ci bên me biryar girt ku wek komele bi rêxistin bibin. Piştî van nîqaşan xebatên me dest pê kir û em hatin vê rojê.”

**Armanca me pêkanîna hiqûqa civakî ye**

Komela dixwaze ku bi başderiya hemû gelen Kurdistanê hiqûqek civakî çeke. Seydaoğlu derbarê vê de hestên xwe waha anî zimên: “Qada xebata me, neheqiyên li hember gelên Kurdistanê ye û em ji bo ku van neheqiyan çareser bikin dixebitin. Helbet divê em van xabatan firehtir bifikirin. Ji aliyekî ve emê bi hiqûqa êrînê re têbikoşin, Ji aliyekî ve jî bi gelên Kurdistanê re werin cem hev û hîn bibin ka hiqûkek çawa dixwazin. Hetanî hiqûqa pazîtîf bi nêrînek civakî çareser bikin em nikarin bibêjan ka em hiqûqek çawa dixwazin. Em tu caran di pozîsyonek ku ji dewletê tiştek hêvî dike de nebûn. Xebatên me li ser qebûlkirina an qebûlnekirina navê Kurdistanê şikil nagire. Armanca van hiqûqnasen ew e ku hiqûqa civakî pêk bê. Helbet heqê van hiqûqnasên ku girêdayê civakê ne heye ku xebatên xwe bikin. Meşrûiyeta me helbet ne bi rêkirina dewletê ye. Ji bo me berpirsiyariyek e ku hiqûqek ku hêza xwe ji civaka Kurdistanê digre pêk bê û meşrûiyeta me ji wir were”

## Rê nedin birakujiyê

Komîteya Kargêr a Hevgirtina Rewşenbîrên Rojavayê Kurdistanê (HRRK) bi daxuyaniyeke bang li hemû aliyên siyasî kir ku li ser rojavayê Kurdistanê şer nekin û bikevin nav diyalogê. Di daxuyaniyê de bi taybetî bang li PYD û PDKS hate kirin.

Naveroka daxuyaniyê bi kurdatasî wiha ye: Her kes dizane ku di demên dawîn de, rewşa siyasî û mewdanî û mercên jiyanê, hem li Rojavayê Kurdistanê û hem jî li seranserî Sûryeyê ber bi alêzî û renckêşanê ve diçin. Û di vaka kurdan de jî pêre pêre dabeşbûneke dijwar rû dide; ev dabeşbûn jî bi awayekî zelal di navbera PYD û PDKS û alîgirên herdû aliyan îro bêtir li dar e. Di van rojên dawî de, nakokiya di navbera herdû aliyan de gurtir dibe. Aliyê din jî, bê navber hewl dide ku ezmûneya Birêvebiriya demî têk bibe û sazî û dezgehên wê yên li Rojava ji holê rake û vê ezmûneyê bi alîkariya hin hêzên din ên derve mandele dike û hemî hêza xwe amade dike da ku bikaribe vê ezmûneyê biherifîne; ev bi hin şêwazên li derveyî siyasetê û bi hin gavên ne aştiyane pêk tên. Ev dîmen, li bin siya şerekî ragihandinê ku ji alî herdû aliyan ve pêk tê, didome. Şerekî êdî ji bilî Tviyan ber bi tora înternet û malperên peywendiya civakî ve berfireh dibe; şerekî ku qet ne hêjayî armanc û ked û têkoşîna gelê me ye.

Di kêlîka ku em şêweyên danûstendina asayîşê şermezar dikin û em ji her kesî re diçespînin ku nakokiyên siyasî bi riya hêz û qewetê çareser nabin, em aliyê din şermezar dikin û dibêjin: Pêwîst nake hûn dest her tiştî berdin û berê xwe bidin ezmûneya birêvebiriya demî, çunkî meydana têkoşînê berfireh e û di serî de jî têkoşîna li dijî rejîma zorbaz a ku bîna welatê me çikandiye. Di vê navberê de, helwestên dijminane û alîgiriya siyasî ya rewşenbîran jî zêdê bi ser êgir dadike û rewşa heyî ya siyasî aloztir dike; rewşenbîrên ku pêwîst e berjewendiyên neteweyî biparêzin û nameya xwe ya dîrokî bi awayekî rewşenbîrane ragihînin. Rewşa ku îro li ber dest e, rewşa rewşenbîrên Başûrê Kurdistanê û pênûsên ku şerê birakujî yê kirên gur dikirin tîne bîra me. / **BasNûçe**

# Cêwîkên dîrokê: Kumbetên Xelatê



**VEDAT BADİKAN**

Li Kurdistanê hin ji bermayiyên ecêb ev kumbetên navçe ya Xelatê ne. Xelat li keviya gola Wanê cih digre û bi bajarê Bedlîsê ve girêdayî ye. Kumbeta Mîr Elî Xeleta li taxa Cotqube ye.

Di sedsala 14’an de hatiye çêkirin. Mekanê mezin li ser pîlaneke çargoşe hatiye lêkirin.

Di hundir de bi qubeyekî ser hatiye girtin. Beşa tirbê bi kemberike ve bi hewşê hatiye girêdan. Kumbeta Hosta û Şagirt li kêleka gola Wanê ye. Di nav kumbetên Xelatê de a herî mezin e. Di sedsala 13’yan de hatiye avakirin. Qaîde li ser çargoşe ye. Derûdorên qaîdê bi sêgoşeyan ve hatiye birîn, û li ser qaîdeyê avahiya silîndîrîk hatiye rûniştandin. Deriyê taç wek nîşekî kûr e. Ser kumbetê bi baniyekî ji derve ve wek qûbeyekî, ji hindir ve bi koniyeki ve hatiye girtin.

Li ser dîwarên kumbetê motîfên rozet û çerxa felekê hatiye neqişkirin. Kumbeta Kalê Maqsût li hember a Mîr Elî ye. Bi tonozên dergûşî li ser pîlanekî çargoşe hatiye avakirin. Berhemê heman salan e.

Kumbetên Cêwîk bi navê Tirba Şêrîn Xatûn jî tên naskirin. Kîtabe ya van kumbetan tûne ye. Tê texmînkirin ku di sedsala 15’yan de hatiye çêkirin. Pîlana wê çargoşe ye.

Baniya kumbetê ji derve wek pîramîdekî ji hindir ve wek qûbeyekî tê xuyanîkirin.

Deriyê bi kember di nav nîşekî de ye. Li ser derî û paceyan gelek nîş, rozet, xeml û neqş hatine kolan.

# Ji bo aştiyê divê Nobelê bidin Öcalan

GABAR ÇİYAN

**Hêviya min ev e ku, hikûmeta nû ya Herêma Kurdistanê bi şertê, xaka kurda bikeve bin kontrola KRG ê, serokwezîrê nû yê Iraqê nas bike û bipejîrîne. Ev pirsgirêkek cidî ye û divê bê çareserkirin.**


Jabar Amin

**Jabar Amîn** endamê Partiya Keskan (Miljö Partiet) li Swêdê ye. Bi xwe kurd e û li ser pirsa kurd têra xwe kûr e û pirsê ji nêz ve raçav dike. Çend roj berê bangekî Amîn di rojnameya rojane ya Swêdê, "Aftonbladet"ê de belav bû. Amîn, ji Komîteya Nobelê li Norvêcê pêşniyaz dike ku, Xelata Aştiyê ya îsal ya bidin serokê PKK ê Abdullah Öcalan. Banga wî wisa didome:

"Pêşniyaza Öcalan, ji bo rawestandina şerekî ku bi dehan sal in didome û pêkhatina aştiyê di herêmê de, taybetî ye. Öcalanê ku niha di zindanê de ye, çekdayîna PKK ê derdixîne berepêş. Ji bo vê, ji dewletê, pêkanîna reformên demokratîk û di herêma xwe de rêvebiriyek bi şiklê otonomiyê, daxwaz dike. Ev plan dikare aştiyê bihêne vê herêma hasas û pirsgirêkekî ku bi dehan sal in didome çareser bike. Carna, ji bo serkevtina planên aştiyê yên mîna Ocalan, pêwîstî bi piştgiriya derve jî heye. Ez wek parlementerekî Swêdê, ji bo teşwîkirina xebatên aştiyê û bidestxistina encamên erênî ji Komîteya Nobelê li Norvêcê pêşniyaz dikim ku, Xelata 2014 ya Nobelê bidin Abdullah Öcalan. Xelatkirina rêvebirên hêzên ku bi terorîstiyê hatine sucdarîkirin, bi pirsgirêkên siyasî ku xitimî ne û çareseriyê ve têkildar in, ne nû ye. Mîsalên wisa pir in. Hinek welatan di wextê xwe de bi çavê terorîstan li hêza Afrîka Başûr-ANC û ya filistiniyan-PLO dinêrî. Lê rêvebirê ANC Nelson Mandela di 93 an de û yê PLO Yassir Arafat di 94 an de xelata Nobelê girtin."

Jabar Amîn weke kandîdat ji bo Parlamentoya Ewropayê ji aliyê partiya xwe hate pêşniyazkirin. Amîn, ji bo kurdên li Ewropayê jî xebatên hêja dike. Her wisa di çarçoveya mafê mirovan de weke çavdêr beşdarî dadgehên li Tirkiyê û Kurdistanê dibe. Pêşketinên li başûrê welêt ji nêz ve dişopîne.

Amîn, berî niha bi demekî kin ji bo raçavkirina hilbijartina Iraqê çubû herêma Kurdistanê. Em bi Amîn re li ser hilbijartina Iraqê, rewşa başûrê welêt û pêşketinên qonaxa aştiyê li Tirkiyê û Kurdistanê axifîn.

**Têkiliyê Hikumeta Herêma Kurdistanê-KRG bi Yekîtiya Ewropayê-EU re xurt dibe. Li gor we Pirsgirêkên bingehîn di nav KRG û rêvebiriya Iraqê de çi ne?**

Jabar Amîn: Pirsgirêka sed salên dawiyê bi rêvebirên Baxdatê re ew e ku, ew mafê kurda nas nakin. Rêvebirên Hikumeta Navendî li Iraqê bi giştî li dijî mafê kurda yê demokratîk, çandî û netewî ne. Îro, qonaxa em tê de û têkoşîna kurda, ji bo kurda hinek maf û mecal pêkanî ne. Iraq bi erênî nêzî wan dibe. Lê başûrê Kurdistanê weke perçeyek ji Iraqê dihejmêrin. Di vê dîtin û daxwaziya xwe de bi israr in. Beşek ji xaka kurda li başûrê welêt di bin kontrola rêvebiriya Baxdatê de ye û naxwazin têxin bin desthilatdariya KRG ê. Barzanî û Talabanî piştî têkçûna Saddamî deverên mîna Sincar û Kerkukê tevlî herêma xwe nekirin. Xeletî, bi nasîna "herêmên bi problem ku li ser wan lihevhatin pêknehatine" hate kirin. Di ser hilweşandina rejîma Saddamî re 11 sal derbas bû, lê êşa deverên kurda didome û beşek ji deverên kurda di bin kontrola Iraqê de ye. Newêrekiya rêvebirên kurda yek ji wan sedeman e ku beşek ji xaka me îro jî ne di bin kontrola KRG'ê de ye.

Rêvebirên kurda di şûna ku Kurdistanê ji nû ve ava bikin û demokrasiyê rûnînin, pêşve bibin, çûne Baxdatê, ji bo avakirina Iraqa nû xebitîn. Di avakirina Iraqa îro, bihêzkirina artêşê û siyasî rola wan heye û divê ev yek bê gotin. Piştî hilbijartinê, li Herêma Kurdistanê dê hikumetekî nû ava bibe û Parlementoya Herêmê dest bi xebatê dike. Hêviya min ew ku, hikumeta nû ya Herêma Kurdistanê bi şertê, xaka kurda bikeve bin kontrola KRG ê, serokwezîrê nû yê Iraqê nas bike û bipejîrîne. Ev pirsgirêkek cidî ye û divê bê çareserkirin. Pirsgirêka duwê, ji nezelaliya bendên rêvebiriya kar û deveran pêk tê. Divê xebat ji navendekî neyê îdarekirin û rêvebiriya deveran bi destê xelk li wir dijîn bibe. Mêzêna hêzê li gorî cî û dengan parvebe û awayê rêvebiriya deveran ji aliyê hiqukî zelal bibe.

**Rêvebirên dewletê û PKK ê hevdîtinan pêk tînin lê reformên pêwîst nabin. Dîtina te li ser endambûna Tirkiyê ya Yekîtiya Ewropayê çi ye?**

Serokê PKK ê Abdullah Öcalan berî niha planek taybetî ji bo aştiyê pêşniyaz kiribû. Ji bo ku aştî pêk were û dewleta Tirkiyê baweriya xelkê bi aştîxwaziya bîne divê hinek gavên erênî bavêjin. Bi niyeta erênî dikarin girtiyên siyasî û rojnevanên di zindanan de berdin. Bi şêweyekî eşkere bi PKK ê û hêzên siyasî yê kurda re rûnin û hevdîtinan bidomînin. Bi baweriya min, ji bo ku hinek reform ji aliyê Tirkiyê bê kirin divê Yekîtiya Ewropayê, Netewên Yekgirtî û Emerîka nîşan bidin ku ew alîgirê aştiyê ne û zextek giran deynin ser Tirkiyê. Ez bi xwe dixwazim Yekîtiya Ewropayê ji bo endametiya Tirkiyê, bi şertê bicîanîna krîterên Kopenhamn ê, deriyên xwe vekirî bihêle. Di vê çarçoveyê de, li ser esasê demokrasiya welêt, guhertin pêk bên û mafên demokratîk û yê mirovan bêne garantîkirin. Dewlet li ser esasê hiqûqê şikil bigre û mafê eqaliyetan li ber çavan bê girtin. Pêşketinek wisa erênî sûdên xwe ji turk û kurdan re heye. Tirk û kurd dê jê fêdê bigrin.

**Dema hûn bêne hilbijartin dê bêhtir bi kîjan mijaran mijûl bibin?**

Dema ez bême hilbijartin bi giranî dê li ser van xalan kur bibim, xebatê bikim: Ez dê ji bo mafê Gelê Kurd bê westan xebatê bikim. Piştgiriya xelkên bindest dê bibe karê minî esasî. Li welatê paşmayî, li dijî centralîzekirina kar û hêzê rawestim û piştgiriya rêvebiriya ji cî bikim. Ji bo parastina mafê penaberan xebatê bikim. Hersê xal ji awira polîtîk ve giring in û ez ê giraniya xebatê bidim hersê xalan.



# PDK li Kurdistanê şaxên xwe vedike



Partiya Demokrat a Kurdistanê ya Tirkiye (PDK-T) ku di sala 1965'an de ji aliyê Faik Bucak ku bi sûîkastekê hate kuştin ve hatibû avakirin piştî 49 salan vê carê ji aliyê Sertaç Bucak ve amadekariya vebûnê dike. Di vê çarçoveyê de Platforma Demokratên Kurd dest bi avakirina şax û vekirina bûroyan kir. Bucak da zanîn ku hewildana wan a partîbûnê bi elepeyeke mezin tê pêşwazî kirin.

PDK ku bi armanca avakirina partiyê piştî 49 salan dîsa dest bi rexistinbûnê kir. Ji bo vê li gelek cihan ofisên platformê têne vekirin. Heya niha şaxên platformê li Amed, Qoser, Mersin û herî dawî li Batmanê hate vekirin.

Di vekirina ofisa Batmanê ku ji Sûriye û Tirkiye'yê gelek nûnerên partî û rêxistinên sîvîl ên civakî jî ên wek Nûnerê Partiya Demokrat a Kurdîstan'a Sûriye Nûrî Brîmo, nûnerên ENKS'ê û Tevgera Ciwanên Kurd yê Sûriye, Nûnergeha Partiya Yekitiya Kürda a Sûriye, endamên saziyên wek HAK-PAR, KADEP, HÜDA-PAR, Nûbihar, Komeleya Ehmedê Xanî, Sağ-Çev, Navenda Çandê ya Canê, Hür-Der, Umut-Der, Serokê Şaredariya Beşîrî'ye yê berê Sait Karabulut, Şarêdarê Gerçuşê yê berê Bedri Ekmen, Şarêdarê Kurtalan'ê Zakir Tuna û endamên Ak-Parti'yê amedebûn.

Bernama vekirinê bi Ey reqîp dest pê kir, bi sînevîzyona jiyana Mele Mistefa Barzanî berdewam kir. Şaîr Mele İmadeddin ji Qur'anê çend ayet û helbestek ku li ser KDP'ê nivîsîbû xwend. Pişt re Serokê KDP-T'ê Sertaç Bûcak di derbarê Rojhilata Navîn û bûyerên ku li Kurdistanê diqewimin axaftinek kir. Bûcak da zanîn ku, pêvajoya di navbera PKK û dewletê de girîng e û divê encama vê serkeftin be.

Bucak di derbarê avakirina partiya wan û vekirinên şaxên platformê de ji rojnama me re axivî û bi lêv kir ku bi hinceta vekirina partiye bi eleqeyeke xurt re rû bi rû ne. Bucak wiha domkir, "Partiya me ji bo siyasetek pir dengîn dê bê ava kirin. Ji bo çareseriya pirsgirêkên kurdan emê tê bikoşin. Em ne di wê ramanê de ne ku partiya me tenê bibe cihekî vala û partiyek tabelayê. Armanca me yekitiya kurdan e. Gel bi nêzikatiyeke germ li partiye dinêre."

# Bilbilê Farqînê li sirgûniyê mir

ENES MEÇÎN

Hunermend û hozanê kurd Şiyar Farqînî di sala1953'an da Li Silîva tê dinyayê. Navê wî yê ewil Celal Sarıkaya ye. Bi eslê xwe ji Heskîfê ne bapîrê Şiyar koçî Farqînê dike. Di heft saliya xwe da bavê xwe Şerîf –ku wênekêşek bi nav û deng e, li Silîva wenda dike. Dayîka Şiyar tevî çar zarokên xwe yên hûrik bî dimîne. Dayika ciwan ji bo xwedî kirina zarokên xwe li kar digere. Ew piştî demekê li Kargeha Tekelê ya li Farqînê weke karkerekî dixebite. Hozan Şiyar li aliyekî li yatiliyê dimîne û ji aliyê dinve jî ew dixebite da ku alîkariya malbatê bike.
Di van salan de dengê hozanê xweş bala mamoste û şagirtan dikşîne. Ew di şahî û çalakiyên dibistanê de distrê. Di heman demê de jî ew sal salên ku tevgerên pelên şoreşên şoreşgerî û welatparêzî di nava ciwanan da bi xurtî belav dibe. Hozan Şiyar jî xwe ji ber van pêlan nade alî. Ew jî bi xurtî cihê xwe di nava tevgera şoreşgerî da digre û bi dengê xwe li dijî pişaftinê derdikeve. Ew bi zimanê dayika xwe bi kurmanciya şêrîn û gewre stranan dibêje.
Hozan Şiyar di sala 1973'an de dizewice û hema piştî zewaca xwe diçe leşkeriyê. Hozan Şiyar sala 1975'an li şubeya leşkeriya Farqînê wekî karkerekî dest bi kar dike. Di ber vî karî da jî komeke muzîkê ava dike. Tevî koma xwe li şahî û dawetan stranên bi Kurmancî distre, bi vî awayî jî ber bi profesyoneliyê ve diçe. Helbet tevgera Hozan Şiyar bala dewletê jî dikşîne. Dewlet biryara mişextkirina Şiyar digre. Li ser vê yekê Şiyar dev ji karê dewletê berdide.
Bilbilê Farqînê di salên 1976-77'an bi tevahî xwe dide kar û barên muzîkê û tevgera şoreşgeriyê. Bi radyoyên xwe yên veşartî li radyoyên we Radyoya Êrîwanê, Radyoya Bexdayê guhdar dike û qeyd dike û paşê distrê. Hunermendên wek Aram Tîgran, Tehsîn Taha û Mihemed Şêxo dibêje, weke ku dibêjin rehmetiyê Şiyar heyranê dengê Mihemed Şêxo bûye dem, saet gav lê guhdar kiriye.
Sala 1975 an da bi dijwariyek û astengiyên mezin bi xebatên axura malê qasetê wî yê pêşîn bi navê 'Birîndarim' der diçe. Xanima ku voqalîstiya Şiyar dike Selma ye ku 'Eman Leylê', 'Lê Canê' , 'Ormiye', 'Zozan', 'Kuda diçî lawo' şiyar re distrê.
Piştî qaseta xwe yê pêşîn Şiyar di navbera salên 1975 û 1980'yî de tevî hemî zor û zehmetî û qedexe kirinan penc qasetên bi navê, 'Birîndarim', 'Bîranîna Ferîd', 'Sazbendo', 'Kuda diçî lawo', 'Zozan Zozan', li pêy hev derdixe.
Ber bi salên 80'yî nav û dengê hozan Şiyar li bajarên Kurdistanê belav dibe. Ew li bajar û bajarokên Kurdistanê bi stranên xwe yên şoreşgerî bang li hişyariya gel dike. Hozan Şiyar jî wekî piraniya rewşenbîr, siyasetmedar û hunermendên kurd para xwe ji cûntaya leşkerî ya sala 1980'î digire. Rejîma leşkerî hozan digre û davêje zindanê. Ew qederê du salan di zindana Diyarbekrê da dimîne. Piştî du salên zindanê Hozan tê berdan. Gelek dem li ser berdanê de derbas nabin sala 1984'an ew careke din ji ber deranîn û belav kirina qasetên kurdî tê girtin. Di sala 1986'an de tê berdan.
Hozan Şiyar ji sala 1980'î heta 1991'a stranan nastrê ji ber ku çend caran tê girtin, ya din kurdî tê qedexekirin hevalên wî yên wê demê wekî Salih Dalgin, Ahmet Farqînî û Rêzan bi tirkî distrên lê ew dibêje ez ji xeynî zimanê dayîka xwe bi tu zimanan stranan nastrêm û mîqrefonê datîne, tê tenê li cumbuşê dixe. bi eks û rik stranên kurdî distre. Dewlet jî bi israr wî digre û êşkenceyên giran li wî dike.
Di sala 1991 de hozan bi qasetên nû derdikeve pêşberî hezkiriyên xwe. Qaseta wî ya navdar 'Şêrîna min' e. Lê her ku diçe rewş xerabtir dibe. Xwedî kuştin û kiryarên ne diyar navê Hozan Şiyar dikin lîsteya xwe. Êdî hozan nema dikare ji mal derkeve. Ew çar pênc mehan di malê da dimîne, heta ku xwe davêje Stenbolê. Li vir bi Navenda Çanda Mezopotamyayê re têkiliya xwe datîne. Pişt re di sala 1992'an de diçe Swêdê. Hozan Şiyar di sala 1998 an de bi êşa Penceşêrê dikeve û di 22 Avrêla 2001'ê da tevî hesreta Farqînê li Stockholmê diçe ser dilovaniya xwe. Li gor daxwaza wî, li Farqînê li Goristana Şêx Xelîlê tê veşartin.
Bilbilê Farqînê bi sekna xwe bi xebat û hişmendiya xwe bi deng û awazên xwe ji Silîva re perû û xelatek hêja ye. Ji ev temenê ku lê hatibû belqitandin girtîgeh, mişextî û dûrwelatî û terkewetenî, Bilbilê Farqînê ji Kurdistanê re şeş qasetên giranbuha hiştine.
'Şêrîna min', 'Ormiye', 'Kuda diçî lawo', 'Dayê Welat Şêrîn e', 'Heyla Dayê', 'Heval Ferid'. Stranên Şiyar ên bi nav û deng in û ew gotin jî ên wî ne ku ew jî wateya ku Şiyar bi qasî dengê xwe di nivîsandina stranan de jî jêhatî bûye. Di dawiyê de meriv dikare bibê ku ew tenê ne stranbêjek, şoreşgerek, gotinnûsek û denbêjekbû. Em nivîsê bi Helbesta Şai'r û nivîskarên gewre Rojen Barnasî biqedînin:
Li pêy Şiyar / Tembûra Şiyar / Li pincê dîwar stûxwar ma / Û sêwî / Ji tiliyên hunerbar. / Dengê wî / Mîna xewneke şîrîn / Li gergefa xeyala / Ji me re / Yadîgar ma. / Me bi ecel nekarî / Hew ji destê me qediya.



# Li Amedê şahiya pirtûkan destpêkir

5'emîn Fûara Pirtûkan a Amedê bi merasimekê vebû. Hevseroka Şaredariya Bajarê Mezin a Amedê Gultan Kişanak got ku ji bo weşangeriya kurdî bigihîje asta ku heq dike bar dikeve ser milê me hemûyan.
Fûara Pirtûkan a Amedê ku heta 25'ê mehê dê li dar be, bi merasimekê deriyên xwe vekirin. Di fûarê de li dor 150 weşanxane û saziyên sivîl stand vekirine û di çarçoveya fûarê de li dor 60 çalakiyên çandî dê li dar bikeve. Her wiha li bendê ne ku li dor 300 nivîskarî pirtûkên xwe îmze bikin.
Di merasima vekirina fuarê de Midûrê Giştî yê TUYAP'ê Îlhen Ersozlu got ku sedî 20 fûar mezin bûye û îsal li bendê de ku bi ser 100 hezarî de kes bên serdana fûarê.
Kordînatorê TUYAP'ê Deniz Kavukçuoglu jî kesên li Somayê mirin bibîr anî û got: "5 sal in li Amedê me pêvajoya aştiyê ku hêviyan şax dide şopand. Hêviya me mezin e, em hêvî dikin ku ev pêvajo li gor daxwazê bi encam bibe. Lê felaketên ku ev hêviya me êşandin jî çêbûn. Li Roboskî, Reyhanli, herî dawî li Somayê me canên xwe winda kirin. Em hêvî dikin ev felaket careke din derneyên."
Serokê Komeleya Nivîskarên Kurd Mehmet Yilmaz jî got ku Ebdula Peşêw xelata Nobelê heq dike û wisa got: "Zimanê kurdî ji zû de ye xelatek wisa heq dike. Em ne li dû xelatan in. Lê xelatkirineke wisa dê wekî lêborîna Ewropayê ya ji bo zimanê kurdî bê qebûlkirin."
Hevseroka Şaredariya Bajarê Mezin a Amedê Gultan Kişanak jî axivî û got ku ew di şexsê Ehmedê Xanî de hurmetên xwe ji bo her kesê ku ji bo kurdî xebetiye ku li hemberî hemû zordarî ziman heta anîne û wisa got: "Weşangeriya kurdî, wêjeya kurdî, ji bo ku were cihê ku heq dike bar dikeve ser milê me hemûyan. Fûar jî di vî warî de rola xwe dilîzin."
Kişanak bal kişand ser panela "Jin divê çima binivîsin?" û xwest ku bi taybetî piştgiriya wêjevanên jin bê kirin û ji bo nivîskarên jin serketin xwest.

# Kurdên Gîlanê li ber nemanê ne!



**Wek tê zanîn piraniya kurdên Xûrasanê kurmancî axev in û menşe ya wan ji bakûr û rojhilatê Kurdistanê ye.**

**Di sala 1597'an de Şah Ebas birrekî serekêşîrên kurmanc civand û nawçe ya pehnava Tehranê ji wan ne izah kir.**

BEHRUZ SUCAİ

Li ser nexşa demografîk a Îranê, min çend caran dîtibû, ku ji bilî Rojhilatê Kurdistanê, kurd li çend navçeyên din yên Îranê jî dijîn. Ji wan navçeyan ya herî fireh navçeya bakûre Xûrasanê ye, ku li ser qeder û dîroka wan, nivîskar û dîroknasê hêja, Kelîmûllah Tewehudî ku ew buxwe ji kurdên Xûrasanê ye, sê bergên stûr kitêban nivîsandiye.
Navçeyên din ku kurd lê dijin, Gîlan, Sebelan (bere li ser wîlayeta Azerbaycana Rojhilat bû û niha bi bajarê Erdebîle ve girêdayî ye) Fars, Qezwîn û Belûcîstan in. Di kitêba Tewehudî de qala kurdên Emarlûye tê kirin, ku di dema Nadir Şahê Efşar de ji Xûrasanê ber bi Gîlanê ve hatine nefîkirin. Wek tê zanîn piraniya kurdên Xûrasanê kurmancî axev in û menşe ya wan ji bakûr û rojhilatê Kurdistanê ye.
Gava ku min peşniyaza xwe ya ji bo teza lîsanse ji mamosteye xwe Profesor Bo Utas re peşkeş kir, wî xwest ku min ji vî kari berhezer bike. Babeta ku min dixwest ez li serê bikolim, celebê kurmanci ya ku li Gîlanê dihat axaftin bû. Tene çavkaniyeke min hebû, ku li Gîlanê kurd dijin; Ew jî pirtûka Tewehudî bû. Vêca gelo ew hîn bi kurmancî diaxivin an na? Min gumana xwe bi hêviya xwedê ve hiştibû. Berî ku em bizanin ka kurd çawa li Gîlanê cîhwar bûne, divê em kurte dîrokeke ser qedera wan ya berî çarsed sal bidin nasandin:
Di salen 1200an de Şêx Şafî (1230-1314) ji nawenda Anatolyayê, ku bi îhtîmal Mereş bûye (Mamosta Hejar ji di ve babetê de tekîd dike) radibe û diçe Azerbaycana Îranê û li bajare Erdebîlê cîhwar dibe. Li gor çavkaniyên rojavayî û hinekên rojhilatî Şêx Şafî bi eslê xwe kurd bûye û bawermendê mezheba Şafî bûye, lê paşê terîqeteke nezî terîqa Şîtiya 12 îmamî dadimezrîne û nawendeke li Erdebîlê vedike.
Li wir gelek tirkên Qereqoyinlî tevî vê terîqê dibin, heta ku neviye wî İsmaîl, bi mirîdên tirk û hinek eşîren kurd ve hezeke leşkerî pêk tîne û di sala 1501'an de bermayen Atabegên tirkesil ji Îranê dibirîne û xwe wek Şah îlan dike. Ji bo ku meşrûyeta dînî û mezhebî ji xwe re damezrîne, bi ûlemayen Şîayên Îranê re dibe hemdest û mezheba Şiatiya 12 îmamî li Îranê dike mezheba fermî. Di ordiya xwe de gelek kurdan dihewîne û wan li dijî împaratoniya sunnî-mezheb ya Osmanî dide pêş.
Her di wê deme de kurdên kurmanc gelek ji dînê Ezdatiyê vedigerîne Musulmantiyê. Lê ne bi yek awayî. Qismekji wan ku di bin bandora Sefewiyan yan terîqetên din yê İslamê de bûn, dibin Elewî yanji Şîayên Caferî. Beşê din ku di bin desthilatdariya Osmanî de bûn, vedigerin ser mezheba Şafî. Şîtî û Sunniti di nav kurdan de yekemîn tovê betîfaqiyê digîne. Kurdên Sunnî li aliyê Osmaniyan li dijî kurdên Şîa li aliyê Sefewiyan şer dikin. Herdû desthilatdarên wê demê ev nakokiya dinî di navbera kurdan de bi awayekî sîstematîk bi kar dianîn.
Destê qedere wisa kir ku yekî bi eslê xwe kurd, yanê Şex Seîdê kurd, ango

İsmaîlê Sefewî, bingeha Îraneke serbixwe danî û bû sebeba betîfaqiya herî mezin di nav kurdan de. Piştî Şah Îsmaîl, Şah Tehmasp û cîgirê wî ê hukimdarî ya wî ji 1587'an heta 1629'an domand, jî ev hevrikiya mezhebî bi şêweyeke bi bandor bikaranîn.
Çîroka cîwarkirina kurdên Xûrasan û Emarlûyê ji dema Şah Ebasê mezin ve destpekir. Şah Ebas li gor felsefeya İbn Emid ku gotibû, 'Dive mirov kurdan bike sîpera behaye', kir û bi tîrekî li du nîşanan xist.
Di sala 1597'an de Şah Ebas birrekî serekêşîrên kurmanc civand û nawçe ya pehnava Tehranê ji wan ne izah kir. Eşîrên kurmanc ku cih ji koçeriya wan re teng bûbû û çêregehan têra wan nedikir, bi kefxweşî peşwaziya ve peşniyazê kirin.
Di sala 1598'an de bi ser Azerbaycan û Mukriyanê de, pencî hezar malbatên kurmanc ber bi pehnava Tehrane ve meşiyan. Qismek wan li derûdora Qezwîn, Zencan û Takistanê man. Şahê Ecem ku gihtştibû beşek ji armanca xwe, careke din bi hîlebaziyê rabû. Rewşa tevlihev a Xûresanê, ku hertim dibû armanca erişên Uzbekan, ji kurdan re îzah kir. Kurmancên Qizilbaş ku murîdên xanedana Sefewî bûn û parastina dewleta Şiî ji xwe re peywir dizanîn, bi gotina Şahê xwe kir û di sala 1601'an de 45 hezar malbatên kurmancên din li axa bakûrê Xûresanê bicîh bûn. Nêzîkî çend hezar malbat li derûdora Tehran, Demawend, Wenamin û Xwanê man. Şahê Ecem gihiştibû armanca xwe. Serkeftin an binketina Kurdan, herdû jî li qazanca wî bû. Pişti ku wi eşîrên kurmanc ji hev belawela kir, vê carê hate dorhalê kurdên Kurdistanê. Ji yekem goriyên vê siyaseta Şah Ebbas sê mirên kurd Ferhadxanê Qeremanlû, birayê wi Zulfeqarxan u ye dawî Emirxan Bradost bû, ku ji kurmancên Şikak bû. Şah Ebbas rutbeya mirtiyê dide begekî Celalî bi navê Brahim Xan û wi dişîne ba Emirxanê Bradost. Emirxanê Bradost ku hikûmeta Ormiye û Şînoyê di destê wî de bû, Mîrîtiya Brahîm Xan venanase û ev yek dibe behane ku Şah Ebbas tovê bê itîfaqiyê têxe nav kurdan û eşîra Celalî tevî çend mefrezeyên Şahenşahi bişîne ser Emirxanê Lepzêrin. Lepzêrînê ku Şah İsmaîl bi munasebeta mêrxasiya wi



milekî wî kiribû zêr. Emirxan Kela Dimdimê ava dike, lê piştî çar sal û nivan dîsa ecem bi dek û dolaban, Kela Dimdimê di nav xwin û agir de dihelin. Celalî di dawiya şer de li îxaneta xwe haydar dibin, lê êdi dereng bû. Dimdim dikeve û dawi li berxwedana kurdan li dijî sefewiyan te.
Kurmancên ku xwe gihandibûn Xûrasanê, Moxol û Uzbekan ji wir derdixin û cihên wan digrin. Piştî demeke ne direj serekeşîrên kurd li wir dibin xwedi rutbeyên Îlxantiyê. Bi hebûna kurmancan li bakûrê Xûrasanê, li navçeyên Qoçan, Şîrwan, Bucnûrd û Deregezê sinorên bakûrê rojhilatê Îranê dibe xwediyê îstiqrareke çend sedsal; ku ev rewşa heta dema Nadir Şahê Efşar (1688-1747) didome. Nadirşah, ku ji sala 1732an heta 1747an hukumdaniyê dike, bi mebesta ku bikare hîmayeta Kurmancên Xûrasanê kesb bike, keça Îlxanekî kurmanc ji Qoçanê li xwe mehr dike û bi muaweneta eşiren kurmanc û Efşar text û tacê seltenetê bi dest dixe. Gava ku wi dit ku otoriteya lokal a Kurmancên Xûrasanê xurt bûye, wekî Şahên Sefewî sen hi dek û dolaban xist. Ji bo ku disan kurrnancan ji hev belav bike, eşîreke kurmanc bi navê Emarlû li navçeya Xûrasanê sewqê Gîlanê kir. Lê armanceke wi din ji ji vê cîhbicîhkirinê hebû. W carê jî Şahê Efşar (Avşar) kurmanc şandin şerê Urisan li Gîlan, ku dikeve başûrê Deryaya Xezer û bakûre Tehrane. Di dawiya salên 1730an de dû hezar malbaten kurmanc ên eşîra Emarlû ji hêla Nîşapûr



û Qoçanê ber bi Geliyê Xurgame ve dirne in û dibin 'spera belaya Uris? Piştî hatina ve eşîre navê navçeyê li tê guhertin û dibe Marlû.

**Emarlû**
Gehiye Emarlûye ketiye rojhilatê bajarê Rûdbare û başûrê navenda wilayeta Gîlanê ango Reştê, çavkaniyen coxrafik û tecrubeyen min bi xwe ji vê navçeye hi hev nagirin. Di sibata 2000'î de ez çûm Zanîngeh a Reşt ê ku li wir hi ser coxrafyaya Gîlane, çavkaniyen hêja hene. Di çend pirtûkên referans de min navên çend gundan dîtin, ku bi kurdî diaxivin. Wisa xuya ye, ku gundiyên vê eşîrê ji geliyê Xurgame (Emarlûye) û ji zozan û silsîleyên çiyayên Elburz û kela Elemûtê bin.
Mixabin ez havine neçûm, ku bi wan re herim zozanan. Lê şeklê koçertiya wan ne mîna berê ye, ku ezê li vir hinekî qala wê bikim.
Min hevi nedikir ku ew piştî 400 sed salên dûrî ji Kurdistane ew êdî bikaribin bi kurmancî biaxivin. Di 16'ê sibata 2000 de ez li bajaroke Rustemabad a Gîlanê peya bûm û çûm garaja Ermarlûye. Çend kes li wir li dora min kom bûn. Me got emê herin Beresenê, ku navenda qezaya Emarlûye ye. Piştî ku em li otomobilê siwar bûn, wekî ku me Eshabê Kêf dîtibin, newa û ahenga 'ez', 'serçawan', 'lawo' ya kurmancî hate her guhê me. Te digot qey Yeqûb, Yûsif e xwe ye wendabûyi li Misirê dîtibe, çaven wî yen kor, bi hesirên hesreta dûniyê vebibin. Çensed sal li geliyekî tenha ketî, lê hin wekî ku wan bi xwe digot 'be lefzê kirmanci gep dekinin?

Şoferê wê otomobîlê, ku bi eslê xwe kurd bû, lê xwe wekî taliş didît, paşê jî bû rehberê min û heta roja dawîn, ku em geliyê Emarlûye man.
Xuya ye, ku ev navçe berê bi temamî kurmancî axev bû, lê wekî ku em tegihîştin, li gelek gundan edî kurmancî nayê axaftin. Zimanên din wekêi talişî û farsî cihê kurmanciyê girtiye.
Li qezaya ku navenda Emarluye ye, ango Beresere, bi kurmancî te axaftin. Piştî erdheja sala 1990'î li Gîlane, mixabin 10-12 hezar kes bûne goriyên ve karesatê. Terkîba demografik a navçeyê bi taybeti piştî erdhejê ji binî ve hatiye guhertin. Gelek gund yan cihe wan hatiye guhertin, yan ji bi temami bûne faris. Çandin ji ber xitimina kaniyan hatiye sinorkirin. Erdheje bi dû xwe re ava gelek kaniyan çikandiye. Çandina heremê piranî demî ye û hîn kesatiya vê dawiyê ya mayi jî ji binî ve bêxer kiriye. Lewra gelek ciwan ji bo ku bikarin debara malbatên xwe bikin, malen xwe terikandine û çûne bajaren mezin wekî Tehran, Qezwîn û Reşt ê. Piraniya navçeyê ji kal û pirejin û miroven navsalî pek tên. Di van neh deh salen dawîn de dewletê gelek îmkanên perwerdekirinê aniye navçeyê. Ji bilî lîseyên normal, li gundên mezin lîseyên keçan hebû û ji sê çar gundî re jî qet nebe çend xwendegehên navîn hatibûn damezirandin. Wekî din li hemû gundan xwendegehên destpekî hebûn. Bandora zimanê farsî li herderî dihate hestkirin. Di hela din ve şêniyên navçeyê, eger nebejim ekstrem bûn, lê pir dîndar bûn. Ji kurdbûne zedetir, ji wan re şiabûn girîngtir bû. Ji wan re eceb dihat ku yekî ku bi zaraweyê wan, ango kurmancî diaxive ji Kurdistane hatibe. Berî ku ez xwe bidim nasandin, wan dipirsî ka gelo ez kurdê Xelxalê me. Xelxal bajareki nêzîkî Erdebîlê ye. Gava mîn digot "na", wan ve carê dipirsi, ka ez ji Qoçanê, ango Xûrasanê me. Hezimkirina hindê ku ez kurmancekî navçeyeke Kurdistanê me ku niha ketiye Wîlayeta Azerbaycana Rojava, pir dijwar bû.
Gelek guhertinên sentaks, morfolojîk û leksîkonê bi ser zimane wan pek hatiye. Di hêla sentaksê de, zimanê wan berevajî kurmanciya standard, ku zimaneki ergatif-absolutîf e, bûye zimaneki nominatif-akuzatif. Ango eger kurmanciya standard ji bo derbirîna hevokên tranzitîf di dema borî de konstruksiyoneke ergatîfî kar dihine.







# Hêlîna stran û helbestên zarokên şer: Helin Başak



RAWÎN STÊRK

**Weqfa ku ji aliyê diya wê ve li ser navê Helîn Başakê hatiye damezrandin li kuçeyên exsîlan, li sergoyekî weke Stenbolê bi xebatên bo zarok û jinan di asteke pîroz de têdikoşe.**




Ji bajarên herî mezin ên cîhanê Stenbol sergoyekî jiyan û jiyînê ye. Ne tenê ew. Sergoyê saziyan, sergoyê trafîkê, sergoyê goçê, sergoyê binpêyan. Sergoyê laşên xêrxwezî û rindî ye... Helîn Başak di nava vî sergoyî de kulîlkek û bêhndoreke xemgîn û dilzîz e. Rîtma streneke ye, rêzbendiya helbestekê û bi rêk û pêkî ya weqfekê ye. Çîrok a diltenikî ya di navbera dualiyên şerekî de mayînê ye. Jêbir a sergoyê jiyînê...

Ku em vegerin hevoka duyem a despêka nivîsê, sergoyê saziyan. Weke herkes pêzan e li Stenbolê bi hezaran sazî hene ku ew jî aliyekî zêdekir in li sergo. Komele, weqif, partî, sendîqe, odeyên kar û hwd. Ji parêzgerên hezkiriyên çivîka bigire heta mafên dar û mirovan li ser her deverê sazî hatine avakirin, lê tu ji xêr û bera wan binêrî tu dê bikevî nava nîqaşên kûr û dûr. Ev li aliyekî, em vegerin Helîn Başakê.

Li kolanên Ataşehir a Stenbolê ji 18 Gulan a 2003'a vir ve li ser navê Weqfa Helîn Başak ya Çand û Hunerê gelek xebat têne kirin ku ew xebat weqfê di kûlvar a xwe de digêhînin asta herî bilind û bi xêr. Gelek kes nav û xebatên weqfê dizane helbet lê çîroka Helînê veşartî ye di bin rêçên kujêrekî de.

### Helin jiyanekbû

Di salên 90'î de ku Kurdistan di rewşeke bê kontrol de bû û rêçên zordaran ketibin nava yên berdîwaran. Li her deverê mirin, kuştin, teqîn û binpêkirina mafên mirovabûnê. Her wiha ew, demeke ku bandoreke travmayên cûr be cûr li sere çend nivşan de anî. Di nava vê mij û aloziya rûtîn de, keçeke 18 salî li Navenda Çand a Mezopotamyayê (NÇM) belkî jî bo ku vê rastiyê bi hêza estetîkê, bi huner, li dîrokê bineqşîne di nava xebatên koma şanoyê de bû.

Helin Başak Kanat di destpêka temenê xwe de belkî hîvîdar a jiyan û cîhanek şûştî bu ji şer û alozî û kuştinan. Belkî ji bo wê jiyan dikek bû ku mirov hema li ser bilîze. Lê her tişt ne di deste wê de bû û sûrprîzên jayanê yên tirsnak û xofgir di tûrikê xiraban de her tim hazir bûn.

Helin Başak ku kêl a jiyana wê ya ewil li Dêrsim hatibû avêtin ji malbateke ku ji ber sedemên goçkirina Dêrsimî yên din çibe, bi heman sedemê goçî rojavayê Tirkiye kiribûn. Kurd bûn û sedema goç kirina wan di dawiya dawiyê de kurdbûna wan bû. Helîn Başak di sala 1994'an de di otobosek ku li Enqere'yê berv bi Stenbolê diçû de bû. Kê dizanî ku wê bibe rêwitiya wê ya dawî. Otobosa ku hê negihabû Stenbolê di rê de rastî êrîşekê hat. Di bûyera ku qewimî de du kes ji dest çûn û gelek kes jî birîndar bun. Yek ji wan Helîn a 18 salî bû. Piştî mesele derket holê ku erîj ji alî PKK'ê ve hatiye kirin. Berpirs hate girtin û cezakirin. Lê Helin çû. Keça kurd, ku saziyek kurdan de perwerde dibû, ji alî yekî kurd ve, li ser navê tevgerek kurdan ve hate kuştun.

### Helin bû helbestek

Çîroka Helinê bi vî avayî mala xwe bar kir û xwe da dûri yê. Lê yen ku li dû mayî ketin nava çîrokeke bi xof. Helbestnûsê navdar Can Yücel wiha got ji bo Helînê di pirtûka xwe ya bi navê 'maaile' de: dema ku di tariya şevê de stêrkek rijî/ ku şitlek şikest ji ezmen/li qiraxa mûnzûr/bi êşek ziravok ji mezopotamyayê/mij dê nikaribe ku roniyê asteng bike/tû, bîrdariya mirovahiyê,

aşiqa azadiyê/însan a bedew, keça kurd a bi rûmet/mirin çiqas xirab dibe bila bibe/ tu 29'ê tebaxê de di 18'mîniyê de şitlek, canek/kenê te dê qet neguhire di dile me de.

**Helin bû stranek**

Dem dema 'ku kî bixive divê ziman bê jêkirin' bû Helîn hê neaxivîbû lê ejdayên xirab axivîn. Yucel rast gotibû, mijê nikarî roniyê tarî bike Helîn vê carê bibû stranek. Koma Agirê Jiyan ku ew jî di bin bana NÇM'ê de komek muzikê ye û Helinê baş nas dikin, bi navê 'Helin' stranek stran û wiha gotin: gewrê bozê rindikê, çavreşê çav belekê. Kewê çima dilezînî, benda kesî namînî. Ronya rojê derewe, şevên pir pir tarî ne.  Ji çiya zinar ezmanan xînin. Axa jindarî hilweşînin gerbê wargehbim, ezê nemi-nim...

**Helin bû weqfek**

Piştî Helinê jiyana xwe ji dest da dinya herî hêdî ji bo diya wê dizivirî. Her tişt reş, her tiş tarî û bê wate. Divêt çareyek. Da ku mij nikaribe roniyê asteng bike. Diya wê Şahhanim Kanat ket nava hewildanek mînak û li ser navê keça xwe weqfek ava kir. Bi navê Weqfa Çand û Hunerê ya Helin Başak (BSV). Bo xebatê jî sergo da ber xwe. Stenbol ku sergoyê her tiştî ye. Li kolanên paş vîtrênên bajêr, li ser jiyana kesên êxsîl, bê derfet û kesên di şertên dezawantaj de. Li ser jin, zarok û ciwanên ku xwediyê mafên kêm in. Pirs-girên jinên ku rastî şîddeta malbatî tên, zarokên ku li kuçeya dimînin, ciwanên ku li sergoyên bajêr kaxiz û plastîkan berhev dikin û hwd.

Başak Kültür ve Sanat Vakfı
Weqfa Çand û Huner a Başak
BSV

I. Helin Başak Öykü Yarışması
I. Pêşbirka Çîrokan a Hêlîn Başak

Başvuru / Serlêdan
15.04 – 15.07.2014

Değerlendirme / Nirxandin
20.07 – 30.08.2014

Sonuçların Açıklanması / Ragihandina Encamên Nirxandinê
1.09.2014

Ödül Töreni / Merasima Xelatdayinê
05.09.2014

1.'LİK ÖDÜLÜ / XELATA 1.'ÎYÊ: 2000 TL
2.'LİK ÖDÜLÜ / XELATA 2.'ÎYÊ: 1000 TL
3.'LÜK ÖDÜLÜ / XELATA 3.'ÎYÊ: 500 TL

ÖYKÜ JİYAN LİSTİK ZAROK ŞENLİK WÊJE HUNER ŞAHÎ HAYAT SANAT DÜNYA ÇOCUK OYUN ÇÎROK BAŞAK ZİMAN KÜLTÜR DİL HELİN EDEBİYAT

BAŞVURU İÇİN / JÎ BO SERLÊDANÊ
Kayışdağı Mah., Uslu Cad., Nihat Sok., No. 55/ A – ATAŞEHİR Tel.: 0 216 420 49 68
www.basaksanatvakfi.org.tr / basaksanatgenclik@gmail.com

Weqfa k udi sala 2003'an de di roja ku Helinê jiyana xwe ji dest dayî weqf komek ku bi dildarî beşdarê bûn hate avakirin û dest bi xebatan kir. Di 11 salên ku borî ne de bi alikariya fonên ewropa û saziyên eleqedar gelek proje bir ê xistin. Jiyana gelek zarok û ciwanan guhert, bi bûrsên xwe gelek xwendekar dan perwedekirinê û gelek jin di mercên xetere de derxistin û bu mertal li ber şîddeta li ser wan. Bi taybetî ça-reserî, rê ya hünerê bu ji bo weqfê. Bi qursên muzîk, şano, wêne-sazî, folklor, sinema û edebiyatê bi sedan zarok perwerde kir û hê jî têdikoşe.

Di nava xebatên weqfê ku niha têne meşandin de xebat wêjeyî ya nû jî heye. Weqf niha bi tirkî û kurdî (kurmancî-zazakî) pêşbirkeke çîrokan organize dike. Dîsa festîvaleke zarokan a navneteweyî jî 3 sal in ku tê organîzekirin. Dîsa weqf piştgiriya saziyên ku mil di-din ji bo zarokên ku kaxizan berhev dikin li çend bajara xebate dimeşîne. Xebateke ji bo zarokan a din jî perw-erdebûna mafên mirovî ya zarokan e. Ew jî bi şîrikiya 12 şaredariyên cûr be cûr dê di pêşerojê de bê organîzekirin. Weke li jor tê nivîsîn sazî ji bo çareser kirina pirsgirêkên zarok û jina bi taybetî rê ya hunerê hildibijêre da bu bikaribin hêzdariya xwe ya çareserkirina jiyînê xurttir bikin. Li weqfê wekî din jî ji bo jinên ku neçarî pirgirêkên malbatî û feodalîteyê dibin pê şêwirîn û alikariya psîkolo-jîk jî bi aliyê pisporan ve tê dayîn.

Di dawiyê de, bi çapikî û israr a dayika Başakê Şahhanim Kanat, hem navê wê dê her û her bijî, hem jî dîsa li ser navê Başakê xebat û kolandinên bê hempa têne kirin. Ji wê jî ku meriv beje, 'Helîn Başak di nava sergoyê jiyînê de kulîlkeke bêhndor e' di cî de ye.

# Başak ji asta ku me dixwest biharî

Dayika Başakê Şahhanim Kanat anî zimên ku bîranîna Başakê helbet ji bo wê girîng bû û ew nav niha dibe wesîleya xebatên ku dimeşin û îro ji bo zarokên ku li kolanan dimînin, yên dix-ebitin, yên ku ji derfetên per-werdahiyê dûr in û ji bo jiyînê bedel didin. Kanat di derbarê avakinina weqfê de wiha got, "Yên ku çûn êdî çûn lê li dû gelek zarokên din ên ku ji şer mexdûr bûne û neçarî êxsiliyê ne he ne. Şîra me ew bû ku bi yekpareya ruh em deste xwe dirêj yên ku di mercê bi zehmet de dijînkin bû. Me xwest ku em ji bo pirsgirêkên wan ça-reseriyan biafirînin, bi wan re bixebitin, ji bo wan bixebitin û rê yek ji wan re peyda bikin. Di destpêkê de me nedizanî ku rê ya ku em tê de ne ewqas zor û bi zehmet e. Me dizanî ku emê çi û çawa bikin. Bilî vê diştek di hişê me de nîn bû. Me dix-west ku zarokan wek özneyekê bibinin û vê jî encax em bika-ribin bi rê ya çand û hunerê pêk bînin. Hedef û rêbaza me, mîrateya ku Başakê ji me re hişti bû".

Kanat di derbarê xebatên ku niha ji alî weqfê ve didomin de jî agahî dan rajnomeya me. Kanat wiha dirêjî da axaftina xwe: Armanca me ne xizmeta ji bo zarokan bû. Me xwest ku bi persperktîfek adilane rê ya hunerê li ber wan vekin. Îro dema ku em dinêrin, bi rehetî dikarim bibêm ku weqif niha ji hedefa ku dabû ber xwe bihorî ye. Niha çend projeyên me did-omin. Yek ji wan rawestandina şîddeta li hemberî jinan e ku em bi Komeleya Jinan ya Güne-bakan û Mala Jiyanâ Jinan ya Riha'yê ve bi hev re dimeşînin. Bi encama vê projeyê em bi tevahî piştgiriya psîkolojîk didin 300 jin. Armanca me ev e ku nêzikahiya ku şîddetê li jinan dike bi temamî ji holê bê raki-rin. Dîsa kesên ku neçarî xebatê têne kirin, yên ku bi zorê têne zewicandin jî û hwd jî em pê re eleqedar dibin û hewil didin ku çareyek jê re bibinin. Xebatek din jî ya perwerdekirina 15 zarokên kurd e ku fêrî zimanê zikmakî û îngilizî dibin.

Kanat ji bo keça xwe jî ev gotin anîn zimên: Başak zarokek kû mezin nebû bû. Ji bo her dayîkê zarokê xwe wisa ye helbet. Em ji bo ku navê wê her dem mezin bibe û mayînde bibe têdikoşin. Di navbera 1-7'ê îlonê de li Ataşehirê emê festîvaleke navneteweyî ya zarokan pêk bînin. Dîsa pêşgirka çîroka jî di asta serlêdanê de didome. Ji bo Kurdistanê jî me dil heye ku hinek xebakt bidin meşandin. Me dil heye ku ji bo zarokan navendeke rehabîlîtasyon û mûzeyek zarokan vekin. Ne tenê ji bo zarokên kurdan, ji bo kesên ku beriya sed salî vir ve zarokên xwe wenda kirine emê têbikoşin.


Şahhanım Kanat

# Ruhê mirov bi erdnîgariyê diguhere

Ganî Nar ji wan kesane ku di nav malbatek dengbêj de mezin bû ye, zaroktiya wî ya bi mûzîkê tije bandorek mezin li ser berhemên wî kirî ye. Ew jî wek kevneşopiyeke dema li xwe vardiqile dest bi lîstina gotinan dike. Lê dem ne wek dema Evdalê Zeynikê ye ku bi rehetî bikaribe li welatê serhedê bigere. Ji her hêlê ve êrîşên hovane yên dewletê li ser kurda hebû, kê li ser navê kurdayetiyê tiştek bikira bêhna sar ya dewletê li pişta xwe hês dikir.



AZÎZ TEKÎN

Nar di van şert û mercan de hetanî sala 2000'an li welêt ma lê piştî wê neçar ma ku ji welêt derkeve. Ku bere xwe da ku, mûzîk ji xwe re kir wargehek Di serî de albûmek tirkî bi navê 'Cemo' derxist. Piştî wê 8 albûmê xwe bi kurdî derxistin. Herî dawî albûma wî ya 'Jan' derket piyaseyê. Nar ji ber hin probleman nikare were lê pir dixwaze di demek kin de vegere xaka bav û kalan.

**Di destpêkê de em ji tenduristiya we bipirsin. Hun ji bo pençeşêrê ameliyat bûn rewşa we niha çawa ye?**

Ez gelekî spas dikim ji xema we re ji bo tendurustiya min, lê bi rasti ez niha geleki başim û tu gazincê min di aliyê tendurustiyê de nîn e. Car car kemo terapi min diêşine lê zû derbas dibe.

**Hun dikarin rêwîtiya xwe ya muzîkê ji me re vebêjin?**

Navê min Ganî Nar e. Ez di sala 1962 de li bajarê Wanê ji dayik bûme. Di malbateki rewşa wê baş de de mezin bûme. Ne gelekî dewlemend, ne jî gelekî kasib. Min gelek dibistan ji nexwend, min tenê 5 sal dibistan xwendiye. Lê mûzîk tim di jiyana min de hebû. Heya roja ez ji aliyê mêjû ve fahmdar bûm tim bi mûzîkê re bûm û mûzîk ji bi min re bû.

We di sala 1982'an de albûmek tirkî bi navê 'Cemo' derxist. Hewcedariya bi tirkî çibû gelo? Di sala 1982'an de ez hîn xorteki 20 salî bûm. Ez dikarim bêjim, di jiyana min a hûnerî de despêkek bû, lê despêkî şaş bû. Roja ku min ew albûm çêkir ez ji Stenbolê vegeriyam Wanê. Min yekem car ew albûm bi dayika xwe da guhdarkirin. Piştî ku dayika min lê wê albûmê guhdar kir min jê pirsi; min got dayê te çava dît? Dayika min bersiveke tûnd da min, got kurê min ji rezîliyê ez tişteki jê fêm nakim. Piştî van gotinan, çava ku avek keliyayî di serê min birije. Lê ji bo min derse ke zêrîn û giran buha bû

**Heta sala 2000'a astengî tunebûn, pişt re çi qawimî ku hun neçarî sirguniyê bûn?**

Zagonên tirkan ê wê demê, geleki giran û bi kêfî bûn. Min geleki konser dan li bajarên tirkan. Her wisa li Kurdistanê jî min konser da. Ew konseran hemû bûn sebeba girtina min, darizandina min. Ez gelek dadgehan hatim darizandin. Dawiyê de ketim zindanê. Konya'yê 4 mehan razam. Dû rê derketim dadgehên tirkan, geleki cezayên







GANÎ NAR

mezin dane min. Neçar mam ku derkevim derveyê welat. Ev 14 salin ez li surgûniyê dijîm, lê ez bawerim demeki nêzde ezê vegerim welêt. Di warê brokrasiya almanan de hinek pirsgirêkê min hene lê ez bawerim di demek nêzde wê çareser bibin û ez jî rê vegerim ser axa bav û kalên xwe.

**Ku Evdalê Zeynikê li çiya û zozanê serhedê derketiba û çûba cihekî din dê nikariba berhemên ew qas hêja biafiranda. Hun jî ev çend salin li dûrî welêtinî. Dûrbûna welêt çi bandorê li ser mûzîka we dike?**

Ez jî wek te difikirim. Ji ber ku ruhê însan bi coxrafya yê re tê guhertin. Têkiliyên însan bi axa wê re tunebe dikeve bin tesîra kultura coxrafya ya ku lê dijî. Ev tiştekî îlmî ye. Tiştekî din jî he ye meriv li ser piya digre. Mûzîk li derveyi welêt dîasporayekê mezin a kurdan li ser piyan digre, tewgera kurdan tesîreki mezin li kurdan dike di warê pozîtîf de, kurd xwe li ser piya digrin û gelekî ji kultura xwe dûr nakevin. Hûnermend jî ji vê rewşê dûr nin in. Ji bo hunermendekî welêt û ax huriyetek cihê ye. Dive hûnermend sedî sed têkiliyên xwe bi axa xwe re dayne. Ev weki têkiliya av u masiyê ye.

**Hun di piraniya albûmên xwe de him derhênerî dikin û him jî gotinên xwê dinivisînin. Bi ya we mûzîsyenek divê di her asta çêkirina albûmê de cih bigre?**

Raste gelek kes dibêjin ku tu ji bo çi berhemên hûnermendên din nabêjin? Prensîbekê min a wisa tûnd nîn e lê dema ku ez bikaribim bi hestên xwe binivsînim û bibêjim ev ji bo min baştir e. Lê dema ku berhemeke dosteki min hevalekî min bi dilên min be ez dibêjim. Mînak di albûma min ya dawî de jî min helbesteke Baba Tahirê Ûryan çêkir û got. Mînakek din jî kêfa min ji strana 'Dara Jînê' ya şehid Arges hat û min strana wî jî got. Astengiya min ya mezin ew e ku her xebateke de bi hûnermendên cihê re kar bikim. Ev jî carina dibe astengî, ji ber ku em hevdû, tarzê hevdû beş nas nakin. Ji ber astengiyên aborî jî em geleki nikarin bi rehetî tevbigerin. Astengiyekî din jî ewe ku gava ez berhemên kesên din bibêjim divê ez bedêla berhemên van jî bidim, wekê mafê telîfê. Ev ji mesrefeke giran e. Gava ez albûmekê derdixim kesek nîn e ku bêje te albûm derxist û alikariya aborî bike. Hemû tişt ji bêrîka me derdikeve, wek berê nîn e mixabin.

**We demekê biryar girt ku dev ji mûzîkê berdin û dû re hun vegeriyan mûzîkê?**

Belê, mixabin demeke min biryarek wisa girt ku ez gelekî ji mafdar bûm, biryara min ne şaş bû. Biryara min li ser astengiya tewgera siyasî û azadiya hûner û hûnermendan bû. Di wê demê de gelek tişt tevlihew bû, gelek tişt ne zelal bû, mixabin hîn ji wisa ye. Wê demê min biryarek wisa girt wekê protestoyek bû. Bela min bi awayekî vekirî protesto kir lê dawiyê de dîsa gelek kesên girîng û hevalên min yên hûnermend nerazîbûna xwe nîşan dan û bi min re peyivîn. Ez careke din neçarî vegeriyam û min dest bi mûzîkê kir. Çîrokeke wisa bû.

**Hunê di pêşerojê de çi xebatan bikî?**

Niha albûma min ya nû derket, bi navê 'JAN'. Ji bo nasandina albûmê me li bajarê Koln'ê şevek mezin amade kir, 32 hûnermend û nêzi 800 kes beşdar bûn. Konsereke gelek bi nav û deng bû. Yekem car ji bo min xebatek wiha hat çêkirin. Piştî 16 salan bi keça xwe re min dûet kir. Keça min Zîlan Nar di vê konserê de gelek kes matmayî hiştin. Bi rasti konserekî balkêş bû. Di vê konserê de min biryar girt ku ezê di demek nêz de albûma keça xwe amade bikim. Projeya min a dûyemîn jî ev e ku ez gelekî hez dikim bi mûzîkeke tasawûfî helbestên Melayê Cizîrî, Ahmedê Xanî, Feqiyê Teyran û Elî Herîrî û mezinên din yên kurdan albûmeke helbestên amade bikim. Ev ji bo min xewnek e.